# BEŞÊ MARŞ Û RISTAN

## PÊŞMERGÊ ME

Rabe tifingê hilî , pêşmergê me
Rexta bavê ser wî milî , pêşmergê me

Tu b'şer û ceng û gilî , pêşmergê me
Tola me kurda hilî , pêşmergê me

Bê şer û ceng û xebat , pêşmergê me
Nabî azad ev welat , pêşmergê me

Şengaî û Tor û Xelat , pêşmergê me
Pêk ve dixwazin felat , pêşmergê me

Mêrxasî karê te ye , pêşmergê me

Dujmin ne barê te ye , pêşmergê me

Dem dost û yarê te ye , pêşmergê me
Kurdistan warê te ye , pêşmergê me

Ev birc û xanêd me ne , pêşmergê me
Bax ûbistanêd me ne , pêşmergê me

Deşt û zozanêd me ne , pêşmergê me
Koh û Sîpanê me ne , pêşmergê me

Ev dem û dewra te ye , pêşmergê me
Welat li hêvya te ye , pêşmergê me

Gavê me li benda te ye , pêşmergê me
Çar û umîda me ye , pêşmergê me

Dara jînê tim şîn e , pêşmergê me
Ava ku tê ser xwîn e , pêşmergê me

Ber xwedin û zanîn e , pêşmergê me

Ne ku sêv û hirmîn e , pêşmergê me

Şêr e tu hem ejder î , pêşmergê me
Tu b'xencer û şeşber î , pêşmergê me

Herdem bijî tu ji me re , pêşmergê me
Tîrêj bi te bawer e , pêşmergê me
----------------------------------------

# GUHMEDIN PÎSAN

Mijde bî mijde bî , xortên dilawer
Hemrîn û hemrîn û Sefîn û Hewlêr
Xemilîn xemilîn , bi al û leşker
Pêşmergên pêşmergên , me daketin şer

Dem xweş e dem xweş e , roja welat e
Dem xweş e dem xweş e , çaxê xebat e

Bû qupîn bû qupîn , bû ceng û halan
Leşkerên leşkerên , kurd hatin meydan
Wa revîn wa revîn , dujmin ji ber wan
Yek ji me yek ji me , hember sedê wan

Dem xweş e dem xweş e , roja welat e
Dem xweş e dem xweş e , çaxê xebat e

Şevgêrên şevgêrên , nîv koh û çola
Can hesin can hesin , ceger ji pola

Guh medin guh medin , van pîs û tola
Da nebin da nebin , bindest û kola

Dem xweş e dem xweş e , roja welat e
Dem xweş e dem xweş e , çaxê xebat e

Tev bidin tev bidin , dengû gazî
Da bijîn da bijîn , bi serfirazî
Da bijîn da bijîn , bi aştîxwazî
Kurd yek in kurd yek in , ap û birazî

Dem xweş e dem xweş e , roja welat e
Dem xweş e dem xweş e , çaxê xebat e

Her wekî her wekî , tîrêj dibêje
Hêstiran hêstiran , herdem dirêje
Bo welat bo welat , ew mest û gêj e
Bişkînin bişkînin , destê qirêje

Dem xweş e dem xweş e , roja welat e
Dem xweş e dem xweş e , çaxê xebat

# EY WELAT

Ey welat ez can fidayê , deşt û zozanê te me
Can fidayê av û dehl û bax û bîstanê te me

Sûnd û peyman bî , li ser min , dê te parêz kim welat
Xwîna narincî birêjim , merdê pêwanê te me

Dest li ser darê tifing im , şog ji erdê nabirim
Pa Sîpan û leşkerê armanc û nîşanê te me

Can bisojim , dê bi pêt û agirê cenga welat
Agirê Zerdeşt bî , ez bi xwe perwanê te me

Bostekê ez ji te nadim , bi welatê Hind û Çîn
Tu bihişta millt e , ez şûr û gerdanî te me

Dê bibirim , ez bi şûr û xenceran , destê çepel
Hîmê bintar û asasê , birc û eywanê te me

Dê bi hêz û hinera xwe , ez te parêz kim welat
Ala rengîn jor ve hildim , ez li ser banê te me

Rengê tîrêj û birûskan , dê xwe berdim ser neyar
Ser bind im bê guman , pêşmergê Barzanî te me

# EY KEÇA KURD

Ey keça kurd rabe ser xwe
Tu çima bê rûmet î

Tu li dinyayê binêre
Kes nemaye raketî

Deşt û zozanê me pêk ve
Baxê û bîstanê me tev

Vaye dijmin tê dilîzin
Jê tu maye derketî

Milê xwe bid milê xortan
Her wekî xuşk û bira

Tev bikin kar û xebatê
Hûn ji bo wî milletî

Şêr bi xwe şêre keça kurd

Ger çi jin ger çi mêr

Bişkîn va qeyd û zincîra
Bib hevalek serketî

Wa li Îran û Îraqê
Ceng û halan û şre

Xwîn dirêje wa ji canê
Xortên kurd yên bi hevketî

Her wekî Tîrêj dibêje
Serfirazî ya me ye

Em wedî maf in bizanin
Tê ku ayil tim ketî

**---------------------------------------------------**

# ŞEQLAWE TEV BAX Û REZ

Taca serê kurd ey welat
Çerxa felek yarê te bî

Hêza helakurd û xebat
Herdem feda karê te bî

Gul çîçeka qada zemîn
Baxê Îrem bexçê evîn

Hêza li rex çayê Sefîn
Herdem arîkarê te bî

Xweş paytext û keşwer e
Herdem di gel ceng û şer e

Hêza li deşta Hewlêr e
Wek hêza rizgarî te bî

Hêz û liqa Şêxan e ew
Yan hêza bêt watan e ew

Hêza qer û germiyan e ew
Azadî tim warê te bî

Hêza li Zaxoya bi deng
Pêşmerge ne bi top û tifing

Bê tirs bi carek têne ceng
Serpişk û hem parê te bî

Hêza li Kerkûk û Dihok
Parêzgehêd bajar û sûk

Nadin ji te , yek ta û mûk
Dinya ku neyarê te bî

Hêza li Hemrîn û Belek
Hêza di Kawa lek bi lek

Tev de bi sîlah û rext û çek
Herdem di ferwarê te bî

Derbend e hem Qelediz e
Barzan di gel Rawandiz e

Şeqlawe tev bax û rez e
Tev şehr û bajarê te bî

Homan û Rêzan û Bilî
Mangêş û zozan û gelî

Bolend û gelyê beg Elî
Armişt û berwrê te bî

Amêdî û Zab û Dihok
Kerkûk û Zaxo , Dêr Elok

Hewlêr û Bamern û Semok
Têkda dibin darê te bî

Cemşîn û şehrê Çem Çemal
Hem Hacî Umran û Gilal

Koy Sinceq , Ertûş û Diyal
Tev gund û şehr yarê te bî

Dokan û Eqra , Mendelî
Çêtir ji Hemamel Elî

Bimrim li ew xak û xwelî
Berbang û bêdarê te bî

Sersing û Bazyan û Şikêf
Mêrga dirêj hem Tilkiyêf

Tev mişmiş û hinar û sêv
Bax û gulê zarê te bî

Şêrîn wekî bazya ne ew
Yan xakî nav berda ne ew

Şengal û ser meydan e ew
Eynzal û siwarê te bî

Ranya û şehrê Xaneqîn
Berya li jêr çayê Sefîn

Hêjane milkê Hind û Çîn
Tev deşt û rûbarê te bî

Şingal û şehrê Neynewa
Çêtir ji Ana û Rewa

Yek dostê em nadin ji wa
Tev koh û zinarê te bî

Kanyên di xaka Mêrge Sor
Gol û çemên rex Şehre Zor

Ava çemê Diclew Xabûr
Tev cok û cobarê te bî

Şêrîn e wek dims û şekir
Kêfa dilê min zêde kir

Sed rengê Sedam û Bekir
Kuştî û birîndarê te bî

Kurd tev bi hesret mêr û jin
Sotî dilê Tîrêj ji bin

Berzanî rêzanê mezin
Her mêr û serdarê te bî

**(sal : 1968)**

**-------------------------------------------**

# BAQÊ KEZÎ

Kurdo rabe ser hilde ji xew
Şev çû îdî berbange ye

Rojê ji reş va hilveda
Pir gulşen ûpir şûle ye

Rewşen dikî çol û beyar
Gulşen dikî koh û zinar

Dijmin li dor te çarkenar
Girtin kemîn û helqe ye

Bê deşt û zozan û xelat
Çwa dikî îro tebat

Carek binêre tu l'welat
Yekser dijî pêgane ye

Bes ke xewê ey bê mecal

Rabe bi yekîtî û heval

Azad kevê qada delal
Ew mesken û warê te ye

Bizan bi sed ax û xwezî
Dest naçe ser baqê kezî

Dijmin şivan e tu pezî
Sed gur binêr li dora te ye

Dengê me çû çerxa felek
Hîşyar kirin îns û melek

Rabe ji xew vêga demek
Tîrêj dem û dewra te ye
---------------------------------

# BÎST Û YEKÊ ADARÊ

Bîst û yekê adarê , hezar carî bi xêr hat
Di dewrana biharê , Newroz û celna welat

Agir li deşt û çiyan , pêtî jê diçne banî
Li çar goşê Kurdistan , dikî şewq û xuyanî

Ew agirê dilê me , pêtî jê diçne ezman
Perava xwe da welat , deşt û çiya û zozan

Keç û xortên di kurdan , li her war û der û cî
Bi ser bejna xwe berdan , xeml û xêza kurmancî

Keç û xort û mêr û jin , dikin pîroziya hev
Tev rûgeşin , devliken bi ax û xwezya hev

Bi kêf û şadîmanî girtine reqs û govend
Yekitî mehrevanî ne b'eşîrtî ne b'dubend

Ji bo me pir ziyan in , ev dubendî eşîrî
Bi van rêçên xwar û mar , doza me naçe serî

Heta ku em nebin yek , nabe tu kar û xebat
Goga xwe em nebin şeg , Azad nabe ev welat

Divê bi dilpaqijî , destê xwe em bidin hev

Çi cotkar û çi karker , bi yek can û dil û dev

Hinga em xweş dikarin , bikin daw û doza xwe
Bi serbestî azadî , pêk bînin Newroza xwe

Hêvî dikim ji yezdan , her sal weke vê rojê
Bikin pîroziya hev , bê par em nemînin em jê

Hem jî bê par nemînin , ji raman û doza xwe
Bi dilxweşî bistînin , em ji îro mafê xwe

Mafê me jî bighê me , wek milletê cîhanê
Azad bijîn wek welat , di vê dewr û zemanê

Wekî îro li hev kin , pîroziya welatê
Ji dil xwe em bi der kevin , vê keder û şewatê

Wek îro em zilav kin , li şehîdêd goristana
Baqên gulan belav kin , li tirbên cengevana

Destan li hev bibestin , li ber gorêd ciwana
Demek em tev biwestin , ji wan pehlewana

Ji bîr nakin tu carî , xebata wan şepala
Ne b'şev û roj û meha , ne jî bi heyam û sala

Ew şehîdên dilawer , canê xwe kirne qurban
Xemilandin bi xwîna xwe , axa kurd û kurdistan

Daxwaza min ji dinyê , ji vê pê ve min navê
Tîrêj li ser we û wan , dike herdem silavê
**------------------------------------------------------------------------**

# EY ŞEHÎD

Can fidayê gel , şehîdê welat
Em dikin pîroz , cejna te b'şewat

Ku te bi merdî , emrê xwe'y ciwan
Di rîya millet , te daye qurban

Ne em tenê , lê cîhan sera ser
Cejna te bikin , li her cih û der

Em ji nêv baxa , gula dicivînin
Li ser gora te , xweş direşînin

Li ser kêla te , şehîdê dilêr

Em dihêvêsin , bi ava zîv û zêr

Em didin zanîn , kar û barê te
Em nîşan didin , cih û warê te

Gora te weke , baxê uhiştê
Heval û hogir , tev tên teniştê

Dê û bavê te , bira û pismam
Ap û xalê te , ew xuşk û dotmam

Li dor gora te , dibin wek xelek
Hêstran dirêjin , ji çavên belek

Tu can fidayê , kar û xebat î
Hem tu kuştîyê , jîna welat î

Herdem di dil û di hinavê me
Tim sawêra te , li ber çavê me

Tu comerdtir î , ji me yeka yek

Bi çoganê te , goga me çê şeg

Bi wê xwîna te , li ser teht û lat
Kilîşek çêbû , bi rengê welat

Ew deşt û zozan , ew mêrg û kanî
Di xwîna te de , tev dan xuyanî

Ala bi rengê kesk û zer û sor
Bi hinera te , me hildaye jor

Ew prçeyê sor , ye erxêwanî
Rengê xwîna te , me têde danî

Mûma jîna te , ya agir pêket
Ji pirîskêd wê , çira me vêket

Çar goşê welat , tev kirye pertew
Li me bû rohnî , li ser te bû şew

Te bi vî rengî , qîma xwe anî

Te ji kok birî , jîna ciwanî

Bi qsî tav û ewrêd bihara
Rehmet ji devê , me dst û yara

Di gel hêstran dikin diyarî
Li ser gora te , herdem bibarî

Tîrêj bi pesin û bi fexir û nazî
Cejna te dike , bi ser firazî….
**-----------------------------------------**

# SEBRA Û ŞETÎLA

Şoreşgerêd Felestîn , cengawerê b'nav û deng
Mêrxasî û gernasî , karê we ye roja teng

Tang topêd sehyonî , çavên we naşikîne
Dijmin vê qenc dizanî , roja cengê dibênî

Sîngê didin ber gulla , hûn pêk ve canfia ne
Yek leşkerê Felestîn , hemberî sedê wan e

Xwîna we û gelê kurd , hat rijandin li Hetîn
Dema cenga Selîbî , heyamê Selaheddîn

Tarîx vaye bi merdî , îro xwe vedigerînî
Berê hzar salê çû , xwe li warekî nû dibîne

Xortê kurd û felestîn , milê wan e li yek dû
Zincîra heyam û dem , cuda nabe ji hevdû

Piştî cenga selîbî , sehyonî hate şûnê
Xortê kurd û felestîn , erd xemilandin ji xwînê

Bizan Menahîn begîn , daxwaza te b'cih nabî
Welatê Felestînê , tucar tu pê şa nabî

Bi sûnd ji mil xwe navên , keleşînkov û şeşber
Mafê wan ku neghê wan , hinek zêde jî li ser

Bila qenc bê bîra we , dema hûn hatne Libnan
Bi tang û top û belafir , di gel leşker kî giran

Canfidayên di sûrî , cengevanên felestîn
Heftê rojî kirin şer , wekî şêrên dev bi xwîn

Hemî badî heqwa çû , ew kotek û zora we
Pêk ve li we wergerî , vajî dem û dewra we

Kete rûpelê tarîx , şermek kirêt û giran
Roja Sebra û Şatîla , ew kuştina bê wijdan

Ew kuştina tevayî , wê li ser we bê hejmar
Ji bîr nabe tucarî , neb şev û roj û êvar

Keç û pîr û kalemêr , ew zarokên du sê meh
Hatin kuştin wê çaxê , bê sebeb û bê guneh

Tev sor bûye ji xwînê , ew topraxa bê gûman
Ey keleşêd sehyonî , dijminê tuxmê insan

Bila hûn qenc bizanin , bi kuştin û bi talan
Ucar millet namrin , der hîyam û der zeman

Silavê milletê kurd , ey şoreşa felestîn
Li we hene bi bara , bi bawerî û yeqîn

Di gel we ne gelê kurd , hem şoreşvanên cîhan
Bijî bjiî Felestîn , bijî bjiî Kurdistan

Tîrêj ji bo Felestîn , ev helbest kir diyarî
Bijî milletên bi dest , her bimrê sitemkarî…
-----------------------------------------------------
----

# CEJNA YEKÊ GULANÊ

Gelek pîroz û bi xêr , roja yekê gulanê
Cejna hemû harekaran ,di vê dewra cîhanê

Ew keleha sitemkar , ya begler û qeysera
Tev herifî bi destê belengaz û karkera

Ku ala bolşevî , das û çakoçê hesin
Hate hildan bi destê , ewî Lênînê mezin

Li xakê Sovyetê bû , demoqratî wekhevî
Leşkerê şer û sitem , ji meydanê tev revî

Qanûna Sosyalistî , bi tevayî hat danîn
Di gel mafê jin û mêr , bawerya xwe pê anîn

Bû kelha aşîtî , ji bo milletên bindest
Her kes bighên mafê xwe , bi aştî û bi serbest

Ew qanûn bi dilxwazî , daket cîhan sera ser
Ta welatê Hind Çîn , xweş belav bû li her der

Ji welatê Hindoras , ta Vêtnama başûrî
Pêk ve bi ser xwe hatin , heta welatê Korî

Ey Evrenê hestîkoj , hevalê impiryalîst
Tiştê çêbû li Îran , ma te nedî te nebhîst

Gelo nayê bîra te , ew şahin şahê bin gor
Ketî bin çerxa tarîx , lê wergerî dem û dor

Ew tac û text û şewket , ketin bin pê û lingan
Keleha wî hate xwar , bi dest şêr û pilingan

Ew rêça şah li ser bû , ger ku tu jî bidî ser
Tê jî here li pey wî , ev bê guman te bawer

Xwîna xortên kurd û turk , ew peyayên demoqrat
Te rijandî li her cî , ji Îzmîrê ta Xelat

Te kir wêran û dojeh , Evrenê bê dîn û ol
Ew welatê Kurdistan , heya bighê Anadol

Tu gora xwe dikolî , pir nêzîke mirna te
Nake rehmê tucarî , tarîx li yê mîna te

Şerekê impiryalîst , ew Rêgin û Corc bûş
Xwîna xortên Felestîn , tucar naçî belatoş

Bizan Menahîm Begîn , rêça te pir cefa ye
Kesê li hespa mirovan , bizan ew tim peya ye

Hêvîdar im ji yezdan , her sal weke vê rojê

Bikin pîrozîya hev , bê par nemînin em jê

Daxwaza Tîrêj e ev , her nejad û niştiman
Hemî bighên mafê xwe , gelê kurd jî di gel wan

Xweşî û şademanî , têkeve dewra zemîn
Nemînî cewr û sîtem , bijî aşîtî û jîn.
---------------------------------------------

## DINALIN

Meyzek li ezmanê bilind
Roja me nû va ye hilat
Rewşen dike bajar û gund

Bû qeb qeba kewê ribat

Bilbil dixwîne sed celeb
Bi dengê xwe'y zîz û eceb
Sotî li dildaran kezeb

Pê ra dinalin , deşt û lat

Ew leg lega gerden dirêj
Mesken li ser dara çilo
Şalûr bi sed awa dibêj

Va tên ji Sîpanê Xelat

Quling û qaz û qertel e
Zerzûr û kund û zerzel e
Tev tên bi kewt û xulxul e

Wan dil ji min kirye berat

Çima ewan mîrek heye
Sed koh ji wan re warge ye
Serbest dijîn , bê lûme ye

Kurd bes tenê man bê welat

Şîmet bikin , rabin tevî
Qeda bi tembelî kevî
Bijîn di nêv koh û zevî

Ferz e îro li me xebat

Zozan û deşt , teva dijîn
Lewra ji dil bûme birîn
Tîrêj li ser ax û enîn

Ku çû ji dest me ev welat
-----------------------------------

# GUH BIDÊRE

Milletê kurd rabe ser xwe bes ji bin xeşmê dere
Jîna bindestî bizane , nehêjaye du pere

Pêşberê alem di dinya , Medî tu bû
Tu ji meydanê çi zû ket , bûye dewlet Tetere

Xan û avayên te yek ser , tev ji ka û ji herî
Xan û avayên neyara , wa ji kevrê mermer e

Bircê dijmin her wekî , eywana Kesra tev negar
Xan û avayên te hêja , rengê axûrê ker e

Va ye dijmin , bû xwedanê , leşker û top û tifing
Bê tu xwedyê halet û nîr û ebûr û niştere

Kincên bejna te sera ser , tev ji çapan û belaş
Kincê dijmin , tev qedîf û çox û kemx û mexmer e

Vaye dijmin bûye xwedanê , teksî û balafiran
Tu temaşa nakî carek , wa tu hê siwarê ker e

Ger dixwazî sebebê xeşma xwe , carek nas bikî
Guhbidêre tu li va xêzên me gotî ji we re

ew kesên zana dizanin , hedefa me l'ser çiye
yê nezan qet ew nizanî , wek li cem xêr xeber e

ger dixwazî tu xwe azad ke , ji bin destê neyar
bigre şûrê Rustemî , dakev tu meydana şer e

ger dixwazî cewher û elmasê derya tu bibîn
besteyê Tîrêj bixwîne tê de dur û cewhere
-----------------------------------------------------
--

# TACA ŞEREFXAN

Ger tu nebî ma em çine
Canim bi qurbana welat
Bawer biked rêça te de

Xwîna me erzan î welat

Axa te misk û enber e
Ava te ava kewser e
Kevrê te dur û mermer e

Elmas û mircan î welat

Ava çemê Dicle Firat
Sed zem zem û ava heyat
Nayên di mizgîn û xelat

Pîroz û derman î welat

Qda te tev zêrê zer e

Kîmya û nift û komir e
Tev dehle tev dar û ber e

Tev bax û bistan î welat

Xemla cîhan , ji rewşa te ye
Şahî bi mizgîna te ye
Dem her di fermana te ye

Taca Şerefxan î welat

Rabû ji te zana û jîr
Rengê Feqî , Elyê Herîr
Rengê Mela , pîrê Cizîr

Wek Ehmedê Xanî welat

Rabûn ji te , mêjûvan
Deng dan di nêv xakî cîhan
Rengê Emîn û Kamûran

Hişyar û Goran î welat

Rabûn ji te mêr û egîd
Wek Xalid û Ebdul Mecîd
Îhsan û kalê Şêx Seîd

Qadî û Barzan î welat

Havîngehad qada te da
Gerek li wan û Ameda
Bayê zozan û serheda

Xweşya dil û can î welat

Lawên te rengê şêrgela
Bi dest tifing , rext li mila
Sîng dane ber top û gulla

Li Îraq û Îran î welat

Şoreşgêred înçax û dem

Xwînê dirêjin rengê çem
Sor kirne ew teht û kelem

Tîrêj bi qurban î welat

---------------------------------------

# EY XORT

Xortê jîr û xwendevan , çare û ûmîda millet
Rabe ji xew tu carek , serê roja me derket

Xwe rapêçe birader , ji bo kar û xebatê
Kes nema ye di xew de , cîhan pêk ve li hev ket

Li çar kenar û hawêr , şer û halan û ceng e
Karwanê riya jînê , binêre va bi rê ket

Li şûna wara nemînî , dem pir xweş e birader
Divê wextê ne mane , tu kes bê al û şewket

Ger ranebî tu ser xwe , welat bi pêş ve naçî
Ew rêberên milletan , tev wek te ne bi himet

Welatê xwe bi zorê , ji bin destan deranîn
Ketin rûpelê tarîx , bi mêranî bi şuhret

Heta ku em wisabin , dê tim halê me ev be
Perîşan û belengaz , jar û bê ser û sikket

Tu guhdêrî li Tîrêj , pesin dide ji bo te
Dest hilînî bi merdî , xweş bijî ev dem û wext.

**------------------------------------------------------------------**
**---**

# RENGÊ CHE GUVARA

Ey gelê kurd , tev bibin yek
Dest bidin hev wek bira
Dahola cengê li darxin
Hûn li meydana şere

Firsetê îro ji dest xwe
Bernedin , dem ya we ye
Ala kesk û sor û zer
Hildin li ser xan û sera

Serxwebûna milletan
Nayê bi sed ax û xwezî
Dest bidin hev merdino
Da hûn nebin şîva gura

Dewleta Baz kurê Dostik

Hûn vejînin , wek berê
Dameya Farqîn bi derxin
Hûn ji destê zorkera

Rengê Guvara li meydanê
Bikin qîr û hewar
Tola bapîra hilînin
Hûn bi şûr û xencera

Ger nekî kar û xebatê
Tu di ber xwe'd ey millet
Tê wisa bindest bimînî
Serxwebûn nayê ji te ra

Dest bide destê hemî
Şoreşgêrê dewra cîhan
Guh bide xêzên di Tîrêj
Edî bes a min j'te ra.

-------------------------------

# AŞTÎXWAZIM

Ez kurdim serbilindim , ez xortê perwerî me
Lawê bajar û gundim , reş mar û ejderî me
Pilingê gerdemendim , ez dêwê çar serî me
Ez pêwanyê der bend im , ez ji bingeha arî me

Ez taca Efrîdonim , şûrê Rustemê Zal im
Ez bastonê di destê , wî Şêx Seîdê kal im
Cenawerê Zaxros im , Zerdeşt yê Şengal im
Pêşmergê Berzanî me , xwedyê şapik û şal im

Ez kurdim dilovan im , dil nerm û aştî xwaz im
Hevalê pêşverû me , azad û serfiraz im
Ez bin destiyê nakim , mêrxas û cengebaz im
Nêçîrvanê neyar im , ez mîna teyrê baz im

Ez ji Dêrsim û Bingol im ez ji Serhed û Xelat im
Ez Torî û Hmrîn im , canfidayê welat im
Ez gamasiyê Xabûr im , hûtê Dicle û Firat im
Ez şêrê Kurdistan im , gernasê rojhilat im

Ez bi nav û bi deng im , men hem demê Guvara
Ez sersot û piling im , li zozanê Hekara
Ez agirê ser têz im , li şax û zinara
Ez Tîrêj û birûsk im , li hemberê neyara

Gelî koma milletan , ma ka edalet kanî
Îraq û Tirk û Îran , tev tên me vî zemanî
Gurmîna teng û topan , deng çû ezmanê banî
Sor bûne deşt û zozan , ji xwîna erxewanî.
------------------------------------------------------------

## KURDISTAN

Ey Kurdistan Kurdistan , navê te l'navê welat
Keça delal û hêja , hevala kar û xebat

Desatê xwe b'destê min de , bi tevayî wekhevî
Millet bi pêş ve naçî , bê komel û bê civat

Şêr şêre ey keça kurd , çi jin û ya çi mêr e
Li Indêra binêre , wa ye pêşkêşa welat

Wek Besê ya bi nav û deng , canfidaya Kurdistan
Di cenga kurd û tirka , li Sîpan û Ararat

Wekî Leyla çav belek , jîna xwe ya ciwanî
Ji bo kurd û Kurdistan , daye mizgîn û xelat

Wek Cemîla Bûheyred , ser bilinda Cezayir
Firensa ew sera ser , dane ber dax û şewat

Temaşekî tu îro , li cîhanê keça kurd
Tê bibîne gelek keç , tev zîrek û ebûqat

Lê tu tenê keça kurd , di bezma keçfiroşan
Îro tête firotin , wek dewara ber mezat

Di quncên reş rûdinê , bi jarî dil şikestî
Derma ku tê ber derî , dibên bavê te va hat

Bi lerz û dil bi tirsê , ew vedgerî cihê xwe
Tu dibê şermeke giran , tenha bi ser wê de hat

Heta ku em wisabin , gavek bi pêş ve naçin
Welat ji dest neyaran , nakin azad û felat

Bese rabe keça kurd , bişkîn tu qeyd û benda
Wekî Tîrêj dibêje , dem û dewra te va hat.
-----------------------------------------------------

## ÊRÎŞA TIRKA LI BAKURÊ ÎRAQ

Sala hezar û nehsed , heştê û sê bi hejmar
Bîst û pêncê gulanê , tirk rabûn bi kar û bar

Sîh û pênc hezar leşker , alayî û leq û hêz
Li tuxûbê Hekarî , li ber xetê kirin rêz

Bi fermana Evren , zor pê ma yê bay Kemal
Êrîşek giran bidin ,ser Kurdistana şemal

Li meydanê bûne sef , kurên Teumûr û Cengîz
Rêz bi rêz û lek bi lek , bi cebilxane û hoşkîz

Onbaşî û bînbaşî , çi zabit û qumendar
Tevd da bi yek dengî got :ey oxlim ateş war

Lê pêşmergêd pehlewan , ji wa çiya hatin xwar
Berê xwe dane cengê , wek piling û gurêd har

Ji çar kenar û hawêr , bi seleh û rext û çek
Weke şêrên dev bi xwîn , li dor wana bûn xelek

Bû gurme gurme topan , xumîn kete reşaşa
Gelî û kort û newal , mişt û dar bûn ji laşa

Herik û der û pehnav , tev xemilîn ji xwînê
Melkemotê cansitîn , ferman rakir li jînê

Erd û ezman û çiya , tev bûn agir û volqan
Mirnê konê reş vegirt , li ser cendekê tirkan

Meydan û şewl û zevî , ew nehêl û der û çol
Hemî kirin goristan , li laşêd tirkêd Anadol

Balafirên di hanê , yêd peymana Atlasî
Laşê tirkan didan hev , dor nedigha her kesî

Xestexane û qişle , tije dibûn ji laşa
Kurdên jar û feqîra , ne yên begler û paşa

Ji birîndara genî bûn , bajar û gund û kelat
Ji Sêrtê te Nisêbîn , ji Midyadê ta Xelat

Evren turkêd Anadol , bi hezaran berhev kir
Xirpo çû heyfa Seddam , xortê xwe tev li ser kir

Sozmana Saykis Pîko , ya Firansa Ingilîz
Dema ku hate danîn , ne b'rêke rast û temîz

Sala hezar û nehsed , deh û şeşan bi hejmar
Wan rohilata navîn , ji hev kirin pişk û par

Ji bajarê Amedê , heta bighê Neynewa
Destegul dane turka , bi tevdîra herdiwa

Evren wisa dixwaze , ne wî erdê sêkuçik
Ya hemberê Hekarî , bakurê çayê Zûzik

Ey Evrenê ditator , daxwaza te b'cih nabî
Welatê Kurdistanê , tucar tu pê şa nabî

Keç û xort û mêr û jin , qet narazin şev û roj
Ji cengê re li karin , welat wê l'te bikin doj

Kurên Guhderz û Rustem , şêr û pilingêd çiya
Bikin kar û xebatê , ew bi dest û bi piya

Deşt û çiya û zozan , Dêrsim û Wan û Bîngol
Cih û warê kurda ye , ne cê turkêd Anadol

Ey Evrenê bê mejî , çav sorî kotek û zor
Bila tu qenc bizane , jêre nema dem û dor

Çerxa dem tim li pêş e , tucar venagere paş
Gelek wek te bê heval , di vê rê de çûne şaş

Bi sûnd û soz û peyman , bi wê xwîna şehîda
Bi wî çakûçê Kawa , bi gernas û egîda

Bi wê tirba Şêx Seîd , li goristana Amed
Bi Berzaniyê nemir , bi gora Qadî Mihemed

Bi kuştîyêd me kurda , em ji vê rê nagerin

Bi merdî ser bi derd in , yan azadî yan mirin

Bijî Partiya Demokrat , bimrin dahişk û neyar
Bimrin peye û patexur , bimrin dûvê koledar

Tîrêj heya vê semtê , helbesta xwe pêk anî
Mêrxasîya pêşmergan , tev tê de da xuyanî.
-------------------------------------------------------

# NÛ ROZ

Serî rake ji temara xewê , da ey dilê jar
Serê rojê bi der ket , çûn ji ser me ew şevên tar

Perava xwe veda , şar goşê urdistan sera ser
Kirî rohnî hemîdeşt û newal û koh û zinnar

Mij û ewrên di reş çûn , va li ser me bûye sahî
Zivistan çû bi serma xwe , li me xweş bû ye bihar

Bihar her sal bi sermed tê , di gel wê cejnê Newroz
Çi cejnek pir xweş e ey dil , delal û nav û nazdar

Di vê rojê de Kawa ku bi çakûçê edalet
Kirî perçe serê Dehakê xwînrêj û sitemkar

Di vê rojê nejadê kurd , ji bin xeşmê bi derket
Biûb kêf û xweş û şahî , li her cih û der û war

Ji xwe'r carek binêre dil , li her cî şademan e
Li her cî reqs û govend e , çi gund û şehr û bajar

Bi xeml û xêza kurdî ne , wekî hawayê kevnar
Di gel hev ew bi kom û cot û tek , têne semayê

Çi mêr û jin çi xort û qîz , çi zarok û çi yextiyar
Li xwe wergirtî ye qadê , kiraskî şînî heft reng

Kulîlk û çîçek û nêrgiz , vebûn wa bişkivîn dar
Tilûr û bilbil û şalûr , quling û qaz û legleg

Ewan mêrgû çîmen kirne , ji bo xwe hêlîn û war
Hela carek tu jî rabe , here çayê Kurdistan

Kurdistan pir xweş e ey dil , wekî baxê Gulîzar
Hemî dehl û rez û mêrg in , hemî bax û di bistan

Hemî av û çem û kanî ne , hem jî cok û cobar
Temaşeke li hewdê sorgula , carek bi şahî

Tu guhdêre li dengêd bilbilan tim qîr û hewar
Eger xestey Kurdistan , bo te nuzhegah e ey dil

Eger ey dil evîndar î , ew e baxê evîndar
Bi wî dengê xwe yî taze , bike hewar û gazî

Wekî bilbil bike fîxan , di nêv baxan li ser dar
Bibin sukran û serxweş , ew bi deng û best û eşar

Tu çend sal û zemanê xwe , bi şahî lê bibûrin
Ji bîr bik tu xem û derd û xîyalên xwe'y di kevnar

Bi erzanî meke winda , evê jîna ciwanî
Me jîn hêja li nîv ro ye , nebûye lê tu êvar

Berî mirna xerabmal , can bikî nîşan û armanc
Berî tîra xwe ey dil , ew di laşê me'd bikî xwar

Bihêlin em ji bo millet , hinek dîrok û xweşxuan
Xebata bo welat ferz e , li ser me roj û êvar

Dema Tîêj herwe gorê , bi şahî şademanî
Di heqê milletê kurd de , nebim ey dil gunehkar

Bi vê helbestê ya taze , ku vêga ez duxwînim
Dikim pîroz heval û hogir û sed dost û sed yar.
-------------------------------------------------------

# NÛ ROJ

Adar e adar e , newroza me ye
Xweş cejn û ser sal e , newrozame ye

Adar çi şêrîn e , cejna Arîyan
Welat hemî şîn e , newroza me ye

Adar bi ser me'd tê , her sal wek îro
Bihna gula xweş tê , newroza me ye

Agir emê dadin , li deşt û zozana
Ji mafê xwe em nadin , newroza me ye

Alê emê rakin , ser xan û sera
Dilê millet şa kin , newroza me ye

Sazbend di gel sazan , hûn pêk ve bidin
Ber deng û awazan , newroza me ye

Xort û keç û qîza , bejna xwe bidn
Ber xeml û ber xêza , newroza me ye

Dakevne govenda , bezma şahiyê
Li bajar û gunda , newroza me ye

Derdê dil millet , hûn derman bikin
Xweş dem e ev firset , newroza me ye

Karker û cotkar tev , îro wek bira
Destê xwe bidne hev , ev doza me ye

Das û bivir rakin , ser dest û mila
Welat pê ava kin , ev doza me ye

Bê xwendin û zanîn , em pêş nakevin
Bê ceng û hem bê xwîn , newroza me ye

Ta kengî tê wabî , ey xortê dilêr
Bê yekîtî nabî , ev doza me ye

Ta ku nebin yek tev , nabî tu xebat
Karê me naghê hev , ev doza me ye

Bi sûnd û peyman be , bi gurzê Rustemî
Bi çakûçê Kawa be , ev doza me ye

Herdem ezê bêjim , best û dîrokan
Seydayê Tîrêj im , ev doza me ye .
---------------------------------------------

# EM LI PÊ DOZA XWE NE

Em hemî pêşmerge ne
Em li xwe pir ewle ne
Serfiraziyê dixwaz in

Em ne ben û kole ne

Ey sitemkar , ey teres
Ma heya kengî , ne bes
Milletê kurd tev şiyar bûn

Pêk ve jîr û xwende ne

Roj hilat , va çûye şev
Gel hemî , dest daye hev
Ew dikin kar û xebatê

Tev li pê doza xwe ne

Milletê kurd namire
Qet ji vê rê nagere
Her wekî Tîrêj dibê

Çax û dewranê me ne.
--------------------------------

# BEŞÊ GAZIN Û ŞÎNAN

KANÎ KALÊ ŞÊX SEÎD

Ey felek bê bext û bê dîn
Çi ye te li me kîn û rik
Dil bûye golek tijî xwîn
Tê dijîn geşt û kelik

Leşkerê derd û xeman
Salarê wan geşta ne ew
Şûr û rim herdem bi dest in
Ta bi serbaz û belik

Şans û bextê me reş e
Îro ji ber alî felek
Cogê me herdem xerab tên
Yê neyar tim mîr û çik

Şans û bextê xwe me nasî
Ku bi setrenc û bi dam
Yê neyar tim fîl û ferzîn
Yê me şahmat û berik

Milletê dinya hemî
Bûne xwedî tac û sera
Milletê kurd bes tenê

Ma bê şahînşah û serik

Ma çi gunehê me ye
Ey çerxa felek bê ol û dîn
Sed hezar carî tifû li te
Pîsa bidkar û dêlik

Me divê rê de bi derdan
Pir fîdakar û şehîd
Pir egît û mêr û gernas
Bê jimar û lek bi lek

Kanî Îhsan Nûrî Paşa
Kanî kalê Şêx Seîd
Ka Bedirxanê xwedî
Tac û şahê birca belek

Kanî Şêx Mehmûdê Berzencî
Û ka Yusif Zîye
Kanî ew Qadî Mihemed
Bavê kur Elyê kinik

Ka Fûad beg , kanî Xalid ,
Ka Extî kanî Heqî
Kanî Seydo , kanî Yado
Ka Birahîmê kinik

Ka Îsa bavê Siwaro

Kanî ew şêr û piling
Kanî Leyla Qasim
Xuşka delal û çav belek

Kê wekî me xwîn rijandin
Wî di vê dewra Cîhan
Ne ji tirk û ne ji ereb
Hem ne moxol û ne tacik

Tim bila li enya te bî
Ev şrm û ev ara giran
Her wekî Tîrêj dibêje
Dijminê bê pişt û zik.
-----------------------------------------------

# ÇAYÊ AZERBEYCANÊ

De rabe ey dilo jaro
Heya kengî di hiznê da

Menale ez bi gorî bim
Di vê zîndan û hebsê da

Tu zanî ku li ser te ez
Bi nak û xem xem û şîn im

Şev û rojan hedan nakim
Ji ber jana ku tu tê da

Eger nakî ji min bawer
Were bik pirsiyarê tu

Ji êşa û hêstirên çavan
Ji canê tim keser tê da

Ji xew rabûne va her kes
Berî dane riya jînê

Li şûnwara tu mayî bes
Di nîv dûman û tozê da

Hezar heyf û mixabin ku
Tu îroma ye bê tevger

Riya bapîr û kalê xwe
Te berda ye bi çolê de

Di heyamê kevin , bûrî
Hemî gernas û rêber bûn

Ku bav û kal û bapîrên
Te deng da bûn di dinê da

Eger nakî ji min bawer
Binêre tu li Araratê

Dijî tenha wekî leylan
Ji xwîna sor di şînê da

Eger nakî tu hêj bawer
Here Amed bipirse tu

Ji darsêpya xwedî wêran
Çiqas ser çûn di jorê da

Ji Amed tu veger dîsa
Berê xwe bid Mehabadê

Li ser çayê Azerbeycan
Tu raweste di jorê da

Tu dîna xwe bide axa
Çiya û deşt û rûbaran

Temaşeke li kevr û tat
Û arbeşkên di dorê da

Ji rengê qurmizî ne tev
Ji wê xwîna fidakaran

Ji mer wek neqşê manî ne
Di dewrana Cîhanê da

Ku karwanê şehîdên kurd
Li pê hev tim şiropan in

Ji heyamê kevin bûrî
Heya îro di cengê da

Bi şahî mijde û mizgîn
Li te Tîrêj dikî ey dil

Ku kurd êdî nema dimrî
Di her dewr û heyamê da.

---------------------------------------------------------

# QULINGO

Qulingê min çima îro
Bi qîrîn tê ji germiyana

Bi çeng û bask û perwana
Berê te wa li zozan

Li te rê dûro , westawo
Ji heval hogiran mawo

Berê te her li berjor e
Dikî gazî li pê wana

Bi vê qîrîn û hawarê
Xem û dedêm te tevrakir

Birînên dil te axaftin
Bi wan êş û kul û jana

Gelo ma qey tu dilya ye
Ji germa kerbela jaro

Di vê cihê bav û bapîran
Welatê berf û barana

Welatê kanî û ava
Welatê wa çemû mava

Welatê çîçek û baxa
Welatê mêrg û çîmena

Welatê fêris û mêra
Cihê petrol û mircana

Welatê bilbil û bazan
Welatê şalûr û qazan

Welatê dîlber û nazan
Welatê ebr û qeytana

Welatê kovî û şêran
Welatê xêr û hem bêran

Welatê gol û avgêran
Cihê Medya û Mîtana

Weyaxud tu evîndarî
Dixwazî dîtina yarê

Di gel hev ku bikin seyran
Di nêv bax û gulîstana

Li te mizgîn qulingê min
Qonaxa te ne pir dûr e

Bi yek firê tu dighê cem
Di nava erd û ezmana

Ne wek rengê min dil jar î
Ji gişt û dîtina yara

Me çeng û bask û per nîne
Ku wek te bighêjim wana

Ji Yezdan ez dikim hêvî
Tu bighê meqsed û wara

Bi dil şahî li hev rûnin
Li ser darên di qizwana

Bi xwedê kî qulingê min
Tu raweste hela carek

Ji te'r bêjim du sê peyvan
Delalê ber dil û cana

Berê te ger li Amed bî
Tu xweş deynî qulingê min

Li kêla Şêx Seîdê kurd
Bidî ber deng û fîxana

Bikî qêrîn li ser gorê

Ku kuştî pêk ve bên dorê

Silavê min li hemyan ke
Heval û hogirê wana

Silavê min bikî dîsa
Li kurdêd Ameda rengîn

Li wa girtiyên di riya millet
Di çal û heps û zindana

Eger tu diçî Mehabadê
Li nîv gorê şehîdan deyn

Bibêje Qadî û Seyfî
Hezar rehmet li ser wana

Berê te ger li Serhed bî
Weyaxûd Dêrsim û Sason

Li zozanê Şerefdînê
Li Agirîdax û Sîpan

Silavê min li kurdan ke
Çi xort û qîz û mêr ê jin

Li xakî kurd ê Kurdistan
Li birc û xan û eywana

Bibêje ku gelek Tîrêj
Ji bo we tim pesindare

Belê ma çi bikî ew gêj e
Ji ber van çerx û dewrana
--------------------------------

## BILBILÊ DILŞADÎ

Ey bilbilê dilşadî hela , wer bike fîxan
Derdê me girane ey bira , birîna me kûr e

Gorî te bitin cerg û dil û mêlak ê hem can
Dengê te ye xweştir , ji ney û nay û bilûrê

Sê hawe te deng , yek ji sira bayê siba ye
Hawayê dî ji dengê xuşîna dehl û reza ye

Hawê sisîya ji bihna şemamok û gula ye
Lewra ku li dinyê tu bi nav û tu meşûr e

Karwanê me va bi rê ketî , lê şevreş û tarî
Serma ye terez kulyên di berfê her dibarî

Bahoz e çelapek têne me , ji her çar kenarî
Warê me welat e ey heval , rêça me dûr e

Çar hawîr me diz û keleş in , têk dane dijmin
Me ji hev radiqetînin bir bi bir , heyf û mixa bin

Qet çarew umîda me nema ye bilbilê min
Meydan e ji bo hirç û çeqel , gur zûre zûr e

Meydane ji bo hirç û çeqel , rovî û keftar
Gorî te bim bilbil , ji serê darê tu wer xwar

Da pêk ve mijûl bim , bi xwe çend rojên di dijwar
Îro li me ferman e , li ser gerdenê şûr e

Destê tewqyê îro ku em herdu bidin hev
Çend sal û zemanên di xerab jîn em di gel hev

Dinya bi xwe dewran e , bizan geh roj e , geh şev
Geh tarî û dûman e û geh rewşen û nûr e

Dîna xwe bide nik bayê barîn ey birader
Sitêra sibê îro ji şerqê li me da der

Rewşen kirî Kurdistan ,bi carek wê seraser
Nîşana sibê ye , fereca xêrê ne dûr e

Piştê wê sitêrê bi xwe berbanga sibê ye
Wê roj hilê rohnî têkeve şûna şevê ye

Karwanê me wê bighêje war û meqsedê ye
Çerxa felekê herdem bi fetl û ger û dewr e

Çexa felekê herdem bi fetl û ger û dewran
Hêvî û hawara me di Yezdanê dilovan

Umîd me herdem bi xwe serdarê li Berzan
Wek Tîrêj dibêje:jîn divê kotek û zor e.

(sal:1975)

--------------------------------------------------------

## ŞÎNA SER ŞAGIRTÊN AMÛDÊ

Şermola hejar li rûyên erdan
Wey war û cihê xeman û derdan

Rabe vê sibê xwe reş girêde
Karwanekî boş va tê ji rê de

Karwanekî bi hêl û mêl û nîşan
Va tête ji Amûda perîşan

Ne koçer in ew , ne warguhêz in
Westa ne li pêy hev , ew bi rêz in

Nêzîk in ne dûr in xweş xuya ne
Wek teşneyê rahê Kerbela ne

Mêvan in , delal in pir ezîz in
Hilmiştî ne paqij in , temîz in

Sînga xwe veke li ber delalan
Himbêz bike xweş ewan şepalan

Zaro ne , ciwan in nû gihîştin
Ew teyrik û bilbilêd bihiştin

Amûd li wan bûye pêt û agir
Naçare revîn berê xwe dan vir

Zan in ku tu dayika henûnî
Bê şik e , li ser wan dê tu rûnî

Rêber Mihemed kurê Seîdî
Sed rehmet li gora wî şehîdî

Wan çakûç û bêr digel xwe anîn
Koça xwe li dor êla te danîn

Şingîn kete çak û çan û bêran
Borîn kete pîrekan û mêran

Porên xwe keçan hemî kişandin
Hinarêd ruyê xwe wan çirandin

Qîzik ku dibêjin : Ax birê min
Pîrek ku dibêjin : Ax kurê min

Ap tenha dibêjin : Ax birazê
Xal herdem dibêjin : Kanî xwarzê

Bû qîr û hewar li dê û bavan

Şûna hêstiran xwîn tê ji çavan

Amûdê seraser bûye lê şîn
Yek mal nema bê fîxan û nalîn

Ca rabe bipirse ey dilê jar
Carek tu ji sînema gunehkar

Bêje :Ey sînema bê ol û bê dîn
Ma qey te digel ewan hebû kîn

Kîna te li wan bû pêt û agir
Ev roja giran li wan te rakir

Birkan bû gelo di bin te  derbû
Yan berq û birûsk bi ser te werbû

Yan pêtek ji dojehê bi derket
Ku bakî Qerecdaxî bi berket

Ku pêk ve civîn bi kîn û azer
Hat girtin li wan derî û pencer

Pêtî ku ji jor avête şaşan
Agir şuxilî di term û laşan

Bû qîr û hewar , fîxan û feryad
Ji ber wî agirî tevan dikir dad

Ema çibikin  ne gazî û han
Bû agir li wan erd û ezman

Zarzarê mekin , gelî biçkûkan
Wîzwîzê mekin , ji rengê çûkan

Ev cewr û cevaya hûn dikêşin
Can û ceger û dilê me dêşin

Canê we dema ji ten cuda bû
Pertew ji xweda digel teba bû

Ew pêk ve firîn ji rengê murxan
Perwaze kirin di baxê Ridwan

 Sed carî tifû ji van deman re
Em hiştin ji kul û hem xeman re

Nakin em ji bîr ,bi dil şikestî
Sala hezar û nehsed û şêstî

Sêzdê çiriya duwem bi nîşan
Tarîx e ji roja sotina wan

Herçî ku mirin ew sêsed û çar
Bil yêd pel şewat û yêd birîndar

Tîrêj bigrî li xwendevana
Sed heyf û xebîneta ciwana .

----------------------------------------------------------------------
-------

## ŞÎNA ŞEHÎDÊN QELEDIZÊ

Erê mamoste rabe ey tu rêber
Li zengil xe tu îro ey dilawer

Bila suxte bi carek tev bibin sef
Herin dersê bi cot cot , ew li pey hev

Hemî rûnin di dîwana dibistan
Li ber wan defter û xame di destan

Li ser lewhê tu binvîsî birader
Ji ayatên di quranê ji ezber

Ji benda sûretê yasîn û ji zilzal
Ji ayatên di heşrê hin ji enfal

Ku bughêzin ji lewhê deftera meşq
Bikin bawer ku heşr û hem mirin heq

Ev e roja jiyana wanî talî
Ji Qeledizê çin , bi koçemalî

Belê ew qet nizanin ev çi roj e
Çi zilzal û qiyamet û çi doj e

Ji firokên di mîg ew bumbên napal
Bi destê dijminê kurd yê xerabmal

Ji bala her wekî tavêd biharê
Ewê agib bi ser wan bête xwarê

Ku ew bombe bi pêt û hem çirûskin
Wekî tava bi berq û hem birûskin

Xwînrêjên şehrê Bexda wan ji nik xoy
Li ser baskêd firokên mîg û soxoy

Şehada wan digel bombên di napal
Ewa şandin berî îmtîhana her sal

Ku vêga îmtîhana wan xilas bû
Şehada wan ne am bû belkî xas bû

Li Qeledizê , wê bî wek şeva reş
Ji dûman û agir , hem ji ateş

Wê suxtên te bi carek bêne kuştin

Lê ew gund dê bi agir bête sotin

Bekir-Seddam çi bûn ev yadîgarî
Ji qutabyan re we şandî ev diyarî

Kitêbên felsefa sewra we bûn ew
Û ya jî qanûna dewra we bûn ew

Kitêbên felsefa we bombên napal
Û qanûn tanq û top in yên xirabmal

Xelatên pir giran in , pir bi qîmet
Ev e ma pêşketin û hem wetenyet

Bi rastî hûn bi xwe pir "aştîxwaz"in
Ji we nakî tu kes , qet lewm û gazin

Erê Qelediza pir jar û xemgîn
Gelo ka ew xwendekarên di bengîn

Gelo ma etle ye ev herdu- sê roj
Û ya jî firset e , bo cejna Newroz

Nema îro tê ji wan deng û pêjin
Nema dîrok û helbestan dibêjin

Dilo jaro ji xwe'r carek binêre
Li zarzara qutabyan , guh bidêre

Li nalîna biçûk û pîr û kalan
Li term û laş û kelaxêd şepalan

Li cobarên di xwîna erxewanî
Li Qeledizê bûn wek cok û kanî

Du - sê cama ji wê xwîna teze
Ji terman hûn hinek goşt bikne meze

Bişînin şehrê Bexdayê diyarî
Ji qiyadê re xelat û yadîgarî

Li ser masa xwe deynin cam û bade
Li dorê sef bi sef rûnin qiyade

Bidin destê hevdu cam û kûpan
Vexun ew her li dengê tang û topan

Ku xwîn û goşt ji wan re cam û meze
Ku tang û top ji wan re nay û saz e

Bekir , Seddam gelo hûn gornepaş in
Tiyêd xwînê ne , birçiyêd term û laş in

Li ser textê Hucac hûn dikne ferman
Ne ol û dîn , neyarêd toxmê însan

Bila li enya we bî , ev şerm û ev 'ar
Heta dinya hebî li roj û êvar

Belê 'ara we kevn e , ne ji niha ye
Ji dewra wan şehîdên Kerbela ye

Swe zarokên Huseynê Haşimî zad
Hemî kuştin li gel wê ava Murad

Bizanin em ku natirsin tucara
Ji ceng we , gelî pîs û neyara

Biçûkên me eger ku têne kuştin
Bi dest we em tucar nayên şikestin

Ji heyamê berê , dewrê zemanan
Ku berx herdem diçûn li dû beranan

Ku darên hûr neyên sotin ji germa
Tucar agir bi xwe navêje qurma

Bila hûn qenc bizanin ey sitemkar
Ji wer namîne ev xeşma we yek car

Bi destê Mistefa Berzanî , rêber
Bi hêz û hinera xortên dilawer

Hûn dê tev da bi carek bên şikandin

Wê tola wan , ji we tev bê sitandin

Jibîr nakin tucarî çarşema jar
Ji meha der nîsan jê bîst û hem çar

Hezar û nehsed û heftê û çaran
Ev e tarîxa kuştina xwendekaran

Wekî Tîrêj dibêje : Ey tu guhdêr
Ku kurd hefa xwe nahêlin di zikê şêr .
---------------------------------------------------------

## ŞÎNA LEYLA QASIM

Serî hilde ji gorînê
Temaşeke hela Leyla
Li ser te kurd dikin şînê
Delala ber dila Leyla

Bi destê dijminê xwînxwer
Tu hat kuştin xuha perwer
Ku derdên tey giran dan ser
Hemî derd û kula Leyla

Te bê tirs , canfida kurdan
Weîsê meşneqa wêran
Wekî ristek hil û mircan
Vebestî gerdenê Leyla

Şêrîna hemdem û yara
Tu rewşa naz û dîdara
Te em hiştin li şûnwara
Li çol û kerbela Leyla

Li ser te'm rengê goyînê
Dirêjin hêstirên xwînê
Rijandiye te li riya jînê
Xwîna xwe wek gula Leyla

Ciwan û rind û nû giştî

Te ev zincîr û ev piştî
Li ser milê me tev hiştî
Di nîv top û gulla Leyla

Bi sûnd û soz û peyman bî
Ku heyfa te bi ser û can bî
Li nik me dê çi erzan bî
Tu bawer bî bila Leyla

Divê xwîna xwe birjînin
Ku em heyfa te bistînin
Tucar em berno danînin
Ji nîv dest û mila Leyla

Bi tevdîra xwe Berzanî
Xeta cengê ji me r danî
Me bawerya xwe pê anî
Çi gel û komela Leyla

Me al hilda ye ber jorê
Bi darê kotek û zorê
Digel te ku neçî gorê
Bi hesret û bela Leyla

Emê tabûtkê peyda kin
Ala rengîn bi ser dakin
Di ber dijmin re derbas kin
Digel Şêx û Mela Leyla

Tu xweş fexr e ji kurda re
Bi karwanê şehîda re
Dilê min tim bi hewar e
Ji rengê bilbila Leyla

Bi wê bejnê bi wê qamê
Dema bighêje hendamê
Silav bik xas û wê 'amê
Şehîd û goriya Leyla

Bi wî rengî bi wê xwînê
Li tenişta Şêx Seîd rûnê
Tu gurzêd misk û beybûnê
Bidî ber wan , cilla Leyla

Digel Qazî Mihemed bî
Li nik Seyfî , Siyamed bî
Li cem Extî û Mehmet bî
Di rêza şêrgela Leyla

Ji derya hiş duran bînim
Bi zîv û zêr bineqşînim
Li kêla ber serî deynim
Dîrok û cedwela Leyla

Bi te'r Yezdan dilovan bî
Bi dîdara xwe perwan bî

Te wargeh baxê Ridwan bî
Di nîv wan sorgula Leyla

Heya sax im ez ê bêjim
Li ser we mest û hem gêj im
Bi xweşxwanê xwe Tîrêj im
Ku la hewle wela Leyla
---------------------------------------------------

## ŞÎNA SEROK BERZANÎ

Adarê tu hat ne wek hemû car
Hêviya me ji te ne ev bû Adar

Her sal tu dihat bi mehrevanî
Tev kêf û xweşî û şademanî

Tanî te digel xwe cejnên Newroz
Pêrgî te dibûn em tev bi pîroz

Dosta me tu bû ji dewra Kawa
Xweşya ber dilê keçan û lawa

Bextê me reş e ji ser heya bin
Ma qey tu jî bû digel me dijmin

Îro dilxweş in û hem jî xemgîn
Em tev rûgeş in lê dil bi nalîn

Em dev li ken in umîdewar in
Lê ji çavên me hêstir dibar in

Îro li me bûye cejn û sersal
Lê derdekî pir giran xwe da pal

Rojek xwe yî xweş nedîn me kurdan
Êşa me giran e , tev ji derdan

Ava Belekê berfê û Sîpan
Qet nakujî agirê dil û can

Bayê Serhedê û Zozanê banî
Hênik nake dil bi zendeganî

Xweşya Hêlekan û Mûş û Wanê
Qet nabe ji dil vê êş û janê

Roja me li welêt nû hat delava
Hîva me li xerbê çûye ava

Berzanî ji vê cîhanê barkir
Umîda me pêk ve tar û mar kir

Sed heyf û mixabin şahê kurda
Van rojên di teng te dev'j me berda

Ey bavê feqîr û dîl û jara
Tem hiştine bê xwedî li wara

Kes nîne serok cihê te bigrî
Dîroka cîhan li ser te digrî

Pey kar û xebata pêcî sala
Meydana welat te hiştî vala

Meydan xalî ye îro ji mêran
Torîk û çeqel li warê şêran

Ey balefira hejar û xemgîn
Tu l'bala dikî hewar û qêrîn

Tu b'xumxum û nalîn û fîxanî
Perwazan didî li jora banî

Xumîna te ya xemê dilê min
Nalîna te ya derd û kulê min

Tu b'gazî ye geh li jor û jêr e
Gazya sibeha tucar ne xêr e

Tu b'lez û bi bez ji Ewrûpa tê
Tenha ku berê te li rojhilatê

Qonaxa te dûr e , çol e ew qat
Warê te ye bajarê Mehabad

Hêdî bilive bi nermî xweş deyn
Siwarê xwe yê hêja tu meêşîn

Siwarê te ye Mistefa yê Berzan
Pêşwayê bilind , bi nav û nîşan

Pir hatî bi xêr ey şahê Berzan

Îro li mehabadê bûye mêvan

Mêvanekî pir qenc û ezîz î
Rêzanekî hêja û temîz î

Tu j'mêj ve gelo ji refê xwe bir bû
Millet û welat bêrya te kir bû

Ey dil ca tu rab bi cengebazî
Tu l'kurdan bikî qîrîn û gazî

Kurdên di Îraq û Tirk û Îran
Kurdên li Sûrî û Yêrîvan

Ji çayê Berzan heyanî Torê
Pêk ve da bicivin hemî li dorê

Ew deşt û çiya tijî bibin kes
Da xayis bimînî çerxê Etles

Deryak çê bibî ji ademîzad
Ji şehrê Şîn û heya Mehabad

Tabûtê ji rengê geştiya baş
Yê ku tê de ew serok û ew pa

Tabûtê li ser serê xwe rakin
Dest bidne hevdu û pişte bankin

Xweş xweş bikevî , ber pêlê destan
Heya we ku bighînin , goristan

Tîrêj tu li ber serê wî rûnê
Hêstiran tu bibarînî ji xwînê

Bêje : Ey serok û şah û rêber
Derkev tu ji tabûtê dilawer

Ey şêrê welat pilingê Berzan
Şevgerê çiya û deşt û zozan

Îro ne ew çax e ku tu razê
Azadiya Kurdistan bixwazî

Çargoşê welat hemî neyarin
Pêşmergê te va hemî li karin

Dîsa wek berê dijîn li meydan
Çav nêrê te ne bi emr û ferman

Deng nayê ji te , bi kêf û şadî
Îro çima bersiva min nadî

Qey rast e , gelo te j'cem me bar kir
Mirna malxerab , te j'me cuda kir

Canê te dema ji ten cuda bû
Perwaze li nik erşê xweda bû

Çerxa felekê ji rengê şûr e
Rêça mirinê di bin dibûre

Karwanê mirinê ne , em li pê hev
Pêk ve li serin , me nîne jê rev

Kurdistan seraser bûye lê şîn
Yek mal nema bê fîxan û nalîn

Kurd wa hemî derketin ji malan
Qêrîn ket biçûk û pîr û kalan

Bû qîr û hewar , li jêr û hem jor
Xortên di bedew , keçên gulî sor

Hêstir bi xwe wek tavêd biharê
Ji çavên belek xweş têne xwarê

Wek tavên meha Adar û Nîsan
Derya rijiya ji ewra dîsan

Sorgul hemî çilmisîn di baxan
Ber tev weşiyan ji gulyên şaxan

Şîna te çiqas bikim ji ezber

Qet nakim xelas bi xam û defter

Lê kurd tu dizanî ew çi mêr in
Şopa te tucarî na guhêrin

Nakim ji bîr bi soz û îqrar
Roja pêncşemê yekem ji Adar

Sala ku tu çû , hezar û nehsed
Hem heftê û neh meqamê sermed

Seyda hûn bişon , dereng e zûkan
Ji ava hêstirên keçan û bûkan

Sabûnek bi bêhn ji şehrê Amed
Qerqer ji welatê Mûş û Serhed

Cawê kefenê wî şapik û şal
Şaşa ser serî kolos û desmal

Şilfa xencerê mekin ji kalan
Dîsa bidne kêlekê ji dil û can

Darbeste ji dehla çayê Berzan
Pêwend û werîs ji porê qîzan

Bergorek fireh , ne teng û goncal
Kêla ber serî , ji çayê Şengal

Hêdî û bi semt daynin di gorê
Baqê sorgula hûn bidne dorê

Ey gora cihê egîd û merdan
Wey war û cihê xeman û derdan

Gorê şînkeve , wekî biharê
Gorê bibe wek baxê Zinarê

Gorê bibe tev tu mêrg û çîmen
Gorê bibe tev kulîlk û çîmen

Gorê bibe tev rohnî û pertew
Lê reş nebî qet nebî tu lê şew

Me sipartiye ete serokê Berzan
Parêz bike wî ji tebayê çolan

Hember qirş û qalê ruyê erda
Rehmet li wê gora te be seyda

Yezdan tu bi navê Mistefakî
Berzanî bi rehmeta xwe şakî

Ridwan tu bikî heval û rêber
Da bên pêşiyê ferîşte û per

Xazim bikî hemdemê teniştê
Tu li ber vekî dergehê bihiştê

Tîrêj timî hêstira bibarîn
Heger bigrî li ser bi ax û nalîn
------------------------

## ŞÎNA HEVALEKÎ

Felek xayin bi mer êdî çi doz e
Li ser me tim mij û mûran û toz e

Li ser me tim mij û hem toz û mûran
Li pey me tim bi qûtîn û bi halan

Li alîkî bi lêdan , tev birêjtin
Li alîkî bi talan , û bi kuştin

Çi heqê te'l me ye , qet ez nizanim
Çiqa bê murwet , û bê bext e zalim

Bese êdî li me dil tev te kir xûn
Bela xwe'j me veke ey çerxê gerdûn

Gelek heyfa min tê li xort û ciwana
Li gernas û egîd û pehlewana

Xebata bo welat , û halê millet
Di dil wan de diçî gorê bi hesret

Erê xortê gelek hêja tu Şêxmûs
Kurê Seido yê Gaso , bi nav û namûs

Tu negihştî tu raman û mirada
Di tabûtê te jî lingê xwe rada

Bi destên xwe'y çepel kurd in di bê ol
Ku xwîna te li rû erdê kirin gol

Kula mezin ji dil naçî tucara
Tu hat kuştin , bi şeş derbên neyara

Delalê min , çi zû îro tu raket
Li ser laşê te bû qîr û qiyamet

Ne meşkîna tenê , û gundê li dorê
Ji Mêrdînê heyanî bighê Torê

Ji Dêrikê heya bighê Nisêbîn
Li ser te wan , girêdane reş û şîn

Ji tabûtê bi derkev , ey birader
Xwe rapêçe di rextan de ji bo şer

Bi şeşderb û bi qolan û bi rextî
Bi mêranî wekî Hişyar û Extî

Tu raweste li ser şax û zinara
Digel dost û heval û kurd û yara

Bi dest bigre tifinga destebaşî
Bikuj mîrlazima , qolordî başî

Tu heyfa Şêx Seîd carek hilînî
Ku navê te bi qencî , her bimînî

Welat vêga ji dest dijmin dinalî
Hevalê min xwe med îro tu alî

Çima îro dikim nakim , birader
Ji te nayê ne lebt û deng û tevger

Ne peyv û gotin û zar û ne galgal
Gelo ma qey ev e mirna xerabmal

Ku mirna malxerab , jê nîne çare
Ji mer dinya ne cih û hem ne ware

Bi xwe dinya wekî rewrewk û ba ye

Li ber çavan sawêra sînema ye

Çiqasî tu li dinyayê bimînî
Tu dê mirnê bi çavên xwe bibînî

Li ber roja xwe ye , her kes bi dorê
Emê carek bibin êvanê gorê

Ku ew mala me ye , tirba reş û tar
Ne dost û ne heval û hogir û yar

Dixum sûndê bi navê pakî Yezdan
Bi wê xwîna te yî paqij dil û can

Ku em heyfa te nehêlin tucara
Li dinyayê di zikê pîs û neyara

Eger ne bi devê Berno û kemalî
Welatê me ji wan qet nabe xalî

Hesabê me digel wana , çi kûr e
Daxwaza me welat , rêya me dûr e

Divê rabin , ku em koça te barkin
Vê tabûtê li milê xorta siwar kin

Te bighînin heya mala te ya heq
Ji vê dinya ne hêja û bi teqreq

Dilo rabe bi qehr û cengebazî
Li nêv tirban bikî qîrîn û gazî

Tu wa mirya bi dengê xwe şiyar ke
Yeka yek wan ji nêv axê tu rake

Gelek hêstiran , li ber wana birêje
Bi dil jarî ji wana re bibêje

Hela rabin gelî miryên bi sed sal
Merivkî zane û mêrxas bi koçmal

Ji Meşkîna wî barkir , bi dil giranî
Me koça wî li nav êla we danî

Divê îro di xizmeta wî dabin
Divê jê re wekî bav û bira bin

Qîmetkî pir giran , hûn jê re bigrin
Li warkî xweş , hûn dê konê wî vegrin

Dizanim ku ji wî warî nema tê
Çi rêk dûr e , riya çûn û nema tê

Ev e sozam digel te , her bi daxwaz
Ku kurdistan bibî carek serfiraz

Bi def û saz digel sîpah û leşker
Li dor tirba te bigrin , xelek û ger

Bi şabaşî bi şahî şademanî
Bigerînin reqs û govendek milanî

Ku tirba te bibî , wek baxê Mercê
Bila 'alem bi carek bêne fercê

Bese Tîrêj bi nalîn û fîxan ke
Xwedê Şêxmûs bi xufrana xwe şa ke

Melayîketên  rehmê bên teniştê
Bibe gor lê wekî baxê buhiştê.

-------------------------------------------------------------

# ŞÎNA ADEMÎZAD

Ey kilîşên dîl û jar , li şûnwarê ciwana
Xwedî ket binaxa sar , di nêva goristana

Ji dinyayê hat birrîn , ew pêger û şopa wî
Bejna bilind û şêrîn , wekî şitla rihana

Gelo ka ew dêmêngeş , ka ew dev û lêv û şeng
Kanîn herdu çavên reş , birhên wekî kevana

Ew laşê gewr û nazik , bûye xwarna gornepaş
Tê dilîzin kurm û kêzik , gêrikêd mûristana

Bûye şîv û firavîn , ji bo tûpişk û mara
Reng û nîşan tev rizîn , di nêv axa cebana

Ne wek di par û pêrar , ne wek dîtî şev û roj
Ne wek vexwar , ne jî xwar , îro li zenga dirana

Ne wek kir kar û xebat , ne wek dîtî sal û meh
Ne wek çû û ne jî hat , di tu dewr û zemana

Ne wek raza û niviştt , ne wek dî şadimanî
Ne wek rabû rûnişt , di nik mervên zana

Ne wek li dewra cîhan , bi serbestî ew gerî
Ne'l tu erdê bê pîvan , ne'l deşt û ne'l zozana

Ne wek keser kişandin , li ser halê esîra
Ne wek tu kul civandin , li ser jar û xizana

Ne wek dî çîçek û gul , ne wek hate guhê wî
Dengê şalûr û bilbil , di nêv bax û bistana

Ne wek dî bihara şîn , ne jî germa havînê
Ne payiza pelweşîn ,  ne serma zivistana

Ne wek bihîst tu cara , wî guvguva bayê kur
Ne dengê tav û ewran , ne xumxuma barana

Ne wek dîtî berx û kar ne naxir û keryêd pez
Ne horhora cotkara ne qutîna şivana

Evê mirna xerabmal , gelek delal veşartin
Ji xort û qîzên şepal , gernas û pehlewana

Ev riya dûr û dirêj , li pêşya me teva ye
Ey Seydayê Tîrêj , tu jî yek e ji wana

------------------------------------------------------------

# BIRRÊ EVÎNÎ

## DI BENGA BIHARÊ DE

Ey biharê tu hat bi xêr
Me dil nema êş û kule

Reng reng dike çi jor û jêr
Tu cejn û Newroza dile

Tu cejn û Newroz e yeqên
Teyr û tilûrên derzemîn

Wan hat bi mizgîna te jîn
Xweş tên bi kewt û xulxul e

Xweş tên bi kewt û kom û tek
Qaz û quling û bazbelek

Şalûr û bilbil lek bi lek
Berçemk û çûk û qertel e

Tev tên bi perwaz û bi rav
Da ku bikin te ew silav

Wan nêrgizan girtin xunav
Bişkeftî xunca sorgul e

Nêrgiz û sorgul bişkivîn
Çîçek û lal û yasemîn

Xweş tên ji wan box û bîn
Axifte canê bilbil e

Axifte wî can û ciger
Sema ye axîn û keser

Hêstran di barê cot û fer
Lewra ku çav her dem şil e

Roj û şevan nakî hedan
Her dem bi nalîn û fîxan

Bû serwerê mirxê cîhan
Lew bûye rêzan û mele

Sazbend e hem dengbêj e ew
Di benda gulê xwînrêj e ew

Vîndar e wek Tîrêj e ew
Ev jîn ku lê bûye bele
---------------------------------

# KERB Û KÎN

Dihatim der ji meyxanê
Dihoşim ez li kortala

Serê min rengê hêlanê
Diçî û tê ji hiş vala

Di ber Birca Belek bûrîm
Li ber pacê min dîlber dî

Min sipas û temena kir
Li ber wek jar û evdala

Bi lavlav jê min kir hêvî
Hela yarê bi min rû de

Bese carek li dinyayê
Bibînim bejnê û bala

Bi kerb û kîn li min nêrî
Wê awrek tûj li min dabû

Got :ey xorto tu zaro ye
Mekev warê pîr û kala

Ji çavê reş belek dîsa
Gelek tîr wê reşande dil

Bi wan birwên di qewsan wek
Kevanê Rustem û Zala

Me dil wek leşkerê dijmin
Gelek dîl û perîşan bû

Di cenga leşkerê Kuran
Li deşt û koh û şengala

Belê paşê dida bersîv
Evîn wê kir li min hingiv

Got :Bê dilya te nakim ez
Bi xweş peyv û bi galgala

Bi xeml û xêz û nîşanê
Ji bircê hate eywanê

Gelek wek min ji hiş xistin
Bi dengê top û xerxala

Ji eywanê bi meş ger bû
Wekî rojê ji reş der bû

Li dinyayê kire şahî
Wekî nûroz û sersala

Bi wê bejna zirav yarê
Wekî şitla sipîndarê

Di balkona serayê ew
Ji rengê beyreq û ala

Cîhan tev şewq û rewşen kir
Zemîn tev lal û gulşen kir

Ji ber tîra evînê bes
Ketî Tîrêj li rex mala

---

# XWESTIYA PÊŞMERGE

seyda :Hey yara min keçka Torî
Çav reşê gerden bi morî
Tu kerem ke ji banê jorî
Ramûsim wan herdu çava

Keç: Lawiko ez ne Torî me
Ez ne keçka Omerî me
Ne şikak û Heyderî me
Ramûsan nayên bi lava

Seyda: Hey yara min ji rohilatê
Te memik sêvên Xelatê
Tu kevoka serê latê
Tu xezala ber delava

Keç : Ne z kevokim ne z xezal im
Ez ne ya xortê betal im
Qelenê min pir giran e
Ne bi zêr û ne b dirava

Seyda :Hey yaram keçka silîvî
Kember te sade zîvî
Qelenê xwe bêje qîzê
Ey delala dê û bava

Keç : Qelenê min xorto xwîn e

Nîşana min ew birîn e
Ger dixwazî min kerem ke
Ya jî rûne tu li mava

Seryda:wey li min soz bî bi rêdim
Kincê pêşmergan girêdim
Qelenê te min qebûl e
Bedewê ser her du çava

Keç : Dê evê xemla Mîtanî
Wergirim dil şadî manî
Xwestiya pêşmergê xwe me
Xwedêyo mala te ava

Seyda:Sed xwezî bi wê wext û gavê
Ev keder ji dil me hilavê
Li Kurdistana delalê
Tu bibî bûk ez jî zava

Keç : Ma gelo heye bibînim
Bendê Kurdistan bixwînim
Ey Tîrêj wê gav mirin heq
Me li cîhan sed silavan

---

# XABÛR Û ZAB

Nazikê min dît ji bircê hate der , wek afîtab
Sed hezar tîr wê ji çavan dane dil , kir wek kebab

Rengê Rustem hate meydanê , bi şûr û gurz û rem
Dil ji ber tenha şikestî , wek şahê Efrasiyab

Ez li meydanê ketim bê hiş , li ser xakê zemîn
Şehr û bajarê dil û can , mane wêran û xirab

Ez li wê çola evînê , mame bê hêvî û han
Ku ji dûr leylan û rewrewkê dibînim rengê ab

Ku Gelawêj û Sipehrî , derketin ji hêla reş
Wa nihan bûn ew ji bala , kadiz û ew mahîtab

Bax û bexçên dil hemî hişk bûn ,gul û çîçek weşîn
Ew bihara kesk û şîn , lê bûye wek tîrmeh û ab

Mirxê dil ma mest û dîn , ku çû ji dest baxê gulan
Hêstirê çavan rewanin , her wekî Xabûr û Zab

Piştî ku têda dixwendin , bilbil û şalûr û mirx
Lê îro tê de dixwînin, bûm û kund û sed xurab

Ey perîzadê qe bes ke , qehr û vê azeriyê

Ma te dil pola ye , nadî min tu bersîv û cewab

Va ji ber nal û girî Tîrêj , bi xwe deng jê bilî
Hêstirê çavan ji wî re , bûne wek av û şerab

---

## YADÎGAR

Der şehneşînê dîlberê
Min dît bi nîşan û bi tac

Min dil ji hêla pencerê
Da destê yadîgar û bac

Gava ku min dil daye dest
Can maye dîl û jar û mest

Perwane reng , agir perest
Gerden li dor şibak û pac

Ew pace bû kaba dila
Pir sofî û şeyx û mela

Êhram vebestin ser mila
Kaba dilan wan kirne maç

Pir têne kabê bê jimar
Hinek peya û hin siwar

Hin jê bi geşt hin kar û bar
Hin jî li ser baskên mîrac

Têne tewafê jin û mêr
Beladikin pir zîv û zêr

Lê vedigerin tûjtir ji kêr
Bê bext û dexsok û gelac

Bes min tenê di say û sefa
Dîbû gelek, cewr û ceva

Hê li min dixwî fort gefa
Yar wek setemkara Hecac

Cana bi azer û bi kîn
Avêtime çola evîn

Hiştim li ser xaka zemîn
Nêv toz û dûman û icac

Ew leşkerê derd û xema

Tev têne dil bi gurz û rima

Carek ne got : Yarê çima
Dil maye bend û bê melac

Îro şahê Berzan e ew
Bi tac û sera û eywan e ew

Dil bir ji min bawan e ew
Can û ceger min dan xerac

Manende Kawayê mezin
Îro bi çakûçê hesin

Dil perçe û par kir ji min
Ez wek Dehaq mam bê îlac

Wê nazika bi toq û benî
Awir li min da û kenî

Cerg û hinavêm hilçinî
Can û dilê Tîrêj quranc

---

# BERFA SÎPAN

Cana tu naz û rindî , wekî Keja li Amed
Tuyî Xeca çelengî, ezim îro Siyamed

Sîng û berê te bozin , befa Sîpan û Serhed
Gerden bilûr û mercan , bi yaqût û zibirced

Tucar terka te nakim , bi qelsî yan bi xurtî
Pesnê te her dibêjim , bi tikrayî bi xurtî

Dixwim sûndê bi êlim , bi wî kalê veşartî
Elifba ez dixwênim ,hê ez neghame ebced

Di nêv baxê Gulîzar, bi rewşa xwe tu sorgul
Li ser te ez dixwênim , wekî şalûl û bilbil

Bi dîdara xwe ey can , derman dikî dilê kul
Li ser taca keya xweş xuyaye , rengê kumbed

Li ser rêça evînê , Tîrêj ne dîn û şaş e
Cawê wî pir giran e , hemî çox û qumaş e

Ne wek dexok dibêjin ku , kevnemal belaş e
Tu guh mede ne çakan , ji destê xwe tu bermed

---

# KEÇKA TORÎ

Lê keçka Torebanî
Çav reş ebrû qeytanî
Bi xeml û xêza Mîtanî

Bejn û balê av gulke
Por verşîn li ser mil ke
Kemerê li ser dil ke

Cotek gorê mûşanî
Heft reng ji neqşê Manî
Pêlavek  Erzîncanî

Rabe dakev meydanê
Bid çindikan li meydanê
Ev cejna Kurdistanê

Tu li hawê saz û namê
Her û wer li hindamê
Sê çiv têkevin qamê

Vê wext û çax û gavê
Azad bî ji bend û davê
Qeyd û zincîran bavê

Lê keçikê rewşa êlê
Nazikê kofî kêlê

Derkev tu ji wê hêlê

Reqs û govendê xweş ke
Xort û lawan serxweş ke
Tim dilê Tîrêj geş ke

---

## PIRS Û BERSEV

Seyda: Erê şoxê erê canê
Tu wer dam biçne seyranê
Ji xwe'r carek temaşakin
Li vê govend û dîlanê

Keç: Ezê çibkim ji govenda
Ji dahol û ji sazbenda
Xem û derdê min pir kûrin
Ji rengê gelyê Sîpanê

Seyda: Kul û derd û xema bavê
Were da'm biçine ber avê
Ku dengê bilbilan xweş tê
Di nêv baxê gulîstanê

Keç: Bi şîrê dê , serê bava
Tucar ez naçim ber ava
Dilê herdem bi kul bima
Wê çibke ji bilbilstanê

Seyda:Bi qedrê Mishefa reş kî
Bi roj û hîv û ateş kî
Tu guh med gotinên vala
Were da'm biçne meydanê

Keç: Bi xirq û bendik û Laleş

Bi Zerdeşt û bi arê geş
Bi wî kalê veşartî ez
Tu car naçim wê meydanê

Seyda : Bi wê rewşa xwekî yarê
Min bê par mek ji dîdarê
Biçin havîngeha Sîpanê
Li jora dengiza wanê

Keç : Du çavên reş ezê kil kim
Birû biskan bi avgul kim
Evê xemla Mîtanî dê
Bidim ber misk û rihanê

Seyda : Bi wan peyvan gelek şa bûm
Ji kêfan ez vewesta bûm
Çiqas ew roj bi min xweş bû
Wekî cejna Kurdistanê

Keç : Bi hesreta Mem û Zînê
Bi Ferhad û bi Şêrînê
Ji van sûndê xwe poşman im
Were dam biçne seyranê

seyda : Ez û yarê li hev hatin
Du dil bi hev me sipartin

Me destê dostiyî da hev
Bi soz û bext û peymanê

Keç : Di rengê te nedî min kes
Me bêdlya te êdî bes
Kum û kolos tucar nadim
Bi taca şahê Îranê

Seyda : Bese Tîrêj timî şabî
Ji fikra ser tu vala bî
Felek vêga bi mir dost e
Ji fetl û çerx û dewranê

------------------------------------------------------------

## NÎŞANA TIFINGÊ

Yar bi fermana evînê
Dame ber dar û kuling
Axiftî şûna birînê
Min ji ber nalîn û deng

Pir ji jana dil dinal im
Xem civînê meh û sal im
Min umir çû pîr û kal im
Va mêjî girtiye zeng

Bê hiş û sewda û dîn im
Ku pelê eşqê dixwînim
Mest û sergerdan û dîn im
Dil bibe sotek pir reng

Hêz ji dest û pê û gava
Çû nema ronî di çava
Roj li me çûye ber ava
Li min êvar e dereng

Yar hinav û dil biriştin
Şîş di nava dil de hiştin
Her demî ez tême kuştin
Bê şer û lêdan û ceng

Sawîra roj û şevayê

Can û cerg û dil tevayê
Min mirin her dem divayê
Goreke tarî û teng

Pa xwezî min yar bidîta
Ew ji pişt perde û çîta
Min ji dinyayê bizîta
Ew gilok û ta û peng

Mêzeke Tîrêj esîto
Herdu ebrû çav ji nîro
Daketin cenga te îro
Her wekî şêr û piling

Cengevan in xweş li kar in
Tîr ji hêla wan dibarin
Can û dil armancê yar in
Rengê nîşana tifing

Yar çiqa bê bext û ol î
Dîn kirim berdame çolî
Rengê Hûlakê Mexolî
Wê li min best dest û ling

Bûm ji êş û jar û derda
Sofiyê mizgeft û werda
Min cîhan pêk ve bi der da

Tev ji bo yara çeleng

---

-----------------------------------------------------------

## WELATÊ SERHEDÊ

Ji nêva ebrûyên cana dibînim
Welatê Serhed û Zozanê banî

Kilîşê kohê Sîpan û Ararat
Hivistîne li kofya kesrewanî

Enî gewher kitêba Zend -Awesta
Zeradeştê mezin ew name danî

Du birhên reş kevanê Rustemê Zal
Awir tûj in ji tîrên zerfeşanî

Li ser sînga sipî navê min û keç
Bi rêza xameya seydayê Xanî

Li ser zendên di boz resmê du şêran
Bi danîna nîgar û neqşê Manî

Sibê zû ew ji bircê hate xwarê
Bi xeml û xêz bi xeftanê Mîtanî

Bi destê min digirt û gote :Fermo
Were seyda ku em hilkişne banî

Li ser masê li hember hev ez û keç
Dironiştin bi şahî şademanî

Li ser masê tijî bû cam û bade
Dida destêm şerabek zaferanî

Bi kêf û ken bi wan peyvên di şêrîn
Got : Tîrêj noşîcan be li ser wî canî

Mi got : Qey keç bi rastî bûye dilgir
Nizanî min ku xefkek nuh deranî

Dema ku min vexwar ez ketme bê hiş
Li ber lingan nema min bi xwe dizanî

Weke cama ji dest pîrê teriqî
Min girt lerze bi qîrîn û fixanî

Dema bi hiş xwe dihatim mane sermest
Gelo xewn e û ya rast e civanî

Ji wê rojê ketim nêv bend û davan

Ketim torê ji xeşîmî û nezanî

Ji rengê mûm û finda min disotî
Li ser pêta evînê cerg û canî

Min beyhûde di vê rê de bi der da
Cîhana xweş û ev jîna ciwanî

Evînî rêçeke dûr û dirêj e
Berokaş e û hin carana hêsan e

Nema têm der ji bin barê evînê
Heya bîmrî Tîrêjê torevanî.

-------------------------------------------------------------------------

# DI GEL MIN ŞERÎ

Me j destê xeşma dîlberan
Herdem bi nalîn û girî
Çav û enî lêv û diran
Neqşên li kevrê mermerî

Ebrû ye şûr , destik sedef
Îro bi dest Xanê Şeref
Leşker li pê zincîr û sef
Êrîş li textê Qeyserî

Biskên siyah zilfên bedew
Serbazê pêşmerga ne ew
Cengê dikin her roj û şev
Vêga li deşta Hewlêr î

Gulyên di reş wek ejder e
Sîng neynika Îskender e
Danîn e pêş û hembere
Xistin ji rajorê derî

Ew dest û zend gurz û rim in
Wan dil kirin talan ji min
Qencîk nekir yarê bi min
Her dem di gel min ew şerî

Can xesteyê jana xemîn

Dil kuştiyê tîra evîn
Herdem li ser ax û enîn
Yar qet li halêm nanerî

Guh nade min yara min qet
Xem her wekî deryayê Şet
Pêl lê didin her gav û wext
Lewra vêket jê zemberî

Weyla li emrê min eman
Goga li ber hol û şegan
Tê çûn gelek dewr û zeman
Hêj ew li ser fikra berê

Rengê Ciwanê Amedî
Rojek xwe yê xweş min nedî
Wek Mem di çola sermedî
Can kir reha Zîna zerî

Ez canfida yara xwe me
Ez bilbilê zehra xwe me
Ez bawerê para xwe me
Tiştê xwedê da min merî

Da min xweda tacek evîn
Bûm torevanê derzemîn
Pesnê xweda Tîrêj bixwîn
Heta bi roja axerî

-----------------------------------------------

## ŞEV Û ROJ

Min bi xwîna dil nivîsî , reşbelek bo yarî ma
Bi dilovanî sivik bik , tu li mil min barî ma
Çunkî zaro me , dibin barê evînê zorî ma
Beske xeşmê tu li min , da ey şah û xunkarî ma
Ez bi nalîn û fîxan im , bê seman im şev û roj

Min bi zarotî evînî , bo xwe kir armanc û kar
Min nezanî keyse dildarî , ne ku soz û qerar
Ez evîndar im tenê , îro gulek nakî bihar
Zulfê sor dûpişkê tev jehr in û ebrû tîremar
Pir wekî min dil digestin , ez bi jan im şev û roj

Sed mela û şêx bi berbejn û nivişt û qelema
Feqiyê Teyran bi qêrîn ku ji ber av û çema
Rustemê Zalê bi şûr û gurz û mertal û rema
Bên bi han im naşikînin leşkerê derd û xema
Ketme tora dîlberan ez bi fîxan im , şev û roj

Ma gelo dîsa bibînim her wekî dewra berê
Bejn û bala wê şepalê , zulf û bisk û temberî
Geş bibî pêta evînê şewq û pertew jê herî
Da bi merdî dil bi soz im , ez li ser wî agirî

Ez ne poşman im tucarî , vînperestim şev û roj

Qehremanên dewleta Medî , Mîtanî û Hûriyan
Herqelê Romê di gel dehqanê Hind û Ariyan
Padîşahê textê Faris , kesrewê Îraniyan
Tev dibin darê te bin taca serê şah û keyan
Rû bide Tîrêj hevalê bê hedan im , şev û roj

----------------------------------------------------------

# EZ NE BAZÎ ME

Min nema hêvî ji gişta nazenîn
Min ji wan şox û şepalan daye dil

Nema xemkêş im li rû xakê zemîn
Min ji wan fikr û mitala daye dil

Ne nêçîrvan im li rû deşta evîn
Min ji wan ahû xezalan daye dil

Ez ne bazî me bi min ravê bikin
Min ji wan mirxên li bala daye dil

Ne Mem im bi xwe aşiqê Zîn
Min ji wan zîndan û çala daye dil

Ne jî Ferhad im evîndarê Şêrîn
Min ji wan gustîl û lala daye dil

Ne Siyamend im li Sîpan har û dîn
Min ji Xec û yar û hevala daye dil

Ne ez im mirvê bi rûxweş zikreşîn
Min ji wan xaltîk û xala daye dil

Ne jî perwan im li dor mûma geşîn
Min ji wan çîçek û lala daye dil

Ne jî serxoş im li ser masa evîn
Min ji wan cam û piyala daye dil

Ta hebim êdî nema rûgeş divên
Min ji wan naz û delalan daye dil

Ne ez im derwêşê keşkûlê hilîn
Min ji wan berbejn û fala daye dil

Min ku Tîrêj im ne bê ol im û dîn
Min ji wan peyvên di vala daye dil

-------------------------------------------------------

# ÊMÎŞÊ WELAT

Carek tu ji bircê were , da ez te bibînim
Ez dil bi birînim

Ew neqşê xweda , ku li te danîne bixwînim
Derdan birevînim

Porê te yê sor , qirmizî wek agirê Zerdeşt
Min dil jar û sermest

Da şîşê li ser wî agirê sor bigerînim
Dil pê bikewînim

Ew çav û birû herdu wekî tîr û kevan in
Awir nejdevan in

Êrîşin li dil herdem bi nalîn û enîn in
Hêstiran dirijînin

Ew dêmên te cana her bi xwe sêvên Xelat in
Êmîşê welatin

Der jîna ciwanî ger ku carek wan bibînim
Dîwane dimînim

Lêvên te yê nazik bi xwe fîncana şerabê
Yan şûşa gulabê

Rojê şahiya ez dê li ser xwe bireşînim
Pê kêfa xwe bînim

Ew herdu memik yek jê bi xwe kanya Firat e
Yek ava heyat e

Rengê Xidirê rahê durust xwe bi te gehînim
Pê can bivejînim

Pêş û qublegeha aşiqanî ey perî tu
Latê Azerî tu

Dergeha li ber pûtxaneyê ez dê şikînim
Te bi kotek derînim

Birhîmê zeman im ez li der xakê Rehayê
Can û dil tebayê

Sed Homan û Nemrûd dê bi qurban bigerînim
Te ji dest wan derînim

Belqîzî li ser textê Seba tu bi emr û ferman
Pertava dil û can

Asef bi xwe me navê xweda ez ku bixwînim
Tev birce te bînim

Zîna min tu yî îro li bajarê Cizîrê
Şehzad û emîrê

Manendê Memê îro di çala çil herîn im
Pir jar û hezîn im

Rehmê bike carek tu li Tîrêj bê wefayê
Beske vê cefayê

Ma dengê min nakî her bi fîxan û girîn im
Ez merdê evîn im .

----------------------------------------------------------

## KÊFA DILAN

Ev bexçeyê xweş yê min e
Tevde gulên sor û zer in
Teyr û tilûr pir tê hene
Herdem di gel hevdu şer in

Tê de heye hewdek ji av
Herdem dibarî jê xunav
Bi wan çaviyên hûr û zirav
Hosta di nêv wêd çêkirin

Rewşa dinê kêfa dila
Avên zelal baxçêd gula
Awaz û dengê bilbila
Çaxê siba seyran kirin

Ger şabe dil , cîhan xweş e
Ger gul hebî , bilbil geş e
Ne wek Tîrêj ew bextreş e
Derd û xema jê hiş birin .

---------------------------------------------------

# AGIRÊ BI TÎN

Qîblegaha aşiqan , ey çîçeka baxê evîn
Nêrgiza kohê Xelatê , sorgula çayê Sefîn

Hingiv û şekir û gezo , têk da ji nêv lêvê te ne
Melhema derd û birîna , pir delal û xemrevîn

Can û dil tev da te sotin , dane ber dax û kewa
Xweş bi wan şîşên di sor yên ku li ser agirê bi tîn

Leşkerê derd û xeman îro , gelek zor dane dil
Tev ji çar hawîr bi halan , têne ser wîna bi kîn

Rengê pêşmergan di cengê , dame ber top û gulan
Bend û hesîr maye dil , wek leşkerê Sedam Huseyn

Pir bi lav û tewqe me , îro ji te ey dîlberê
Bi dilovanî tu vê zincîr hesarê helîn

Bes ke vê cewr û cevayê , carekê rehmê bike
Dil tu azad û rehakî , wî ji zindanê derîn

Çimkî ez vêga ciwan im , pir min dinya xweş e
Hê ne êvar e li min , belkî li nîv roye me jîn

Sond û peyman be li ser min , ta li dinyê ez hebim
Dê bidim pesnê te herdem , ey şepal û nazenîn

Rengê bilbil dê li ser , bejna te bêjim dem bi dem
Her binalim ez di nav bax û kulîlkên kesk û şîn

Ez di rist û dawîtîpan , bê pesin mamoste me
Lê di benda nazikan , tîrêj bi xwe bê hiş û dîn

------------------------------------------------------------------
---

## GIRAN BARO DILO

Yara te ket destê neyar
Ma tê çikî jaro dilo
Gerden bi ser te"d maye xwar
Bê hêvî û çaro dilo

Yara te ya şeng û bedew
Hêsîra dest neyar e ew
Çawa dikî razan û xew
Çav pêl û xewaro dilo

Rind û delala naziyan
Îro bi dest canbaziyan
Îran û Tirk û Taziyan
Bê kêro ser saro dilo

Wa tê firotin ew çeleng
Vêga bi dolar û fireng
Gazî dikî nayê te deng
Ey lal û bêzaro dilo

Çavan ji temarê veke
Carek li dinyê mêzeke
Kincan li ser bejna xwe ke
Rê dûr giran baro dilo

Tu l'ba keve lingan bilivîn

Pir dûr e ev rêça evîn
Yarê ji nav destan derîn
Wek şêr û wek maro dilo

Rabe eve roja te hat
Bê yar dikî çawa tebat
Sed deşt û zozan û xelat
Tev cih û tev waro dilo

Tu bi xeml û xêzê dîlberê
Dîsa werin dewra berê
Ebrû siya dêm fenerê
Tîrêj fedakaro dilo

-----------------------------------------------------------

# BERFA ZINARA

Eman û sed eman im , ji ber eşqa te dîlber
Herdu çavên te yên reş , neqş in li kevrê mermer

Birwên te yên reş temîz , kevanê Ristemê Zal
Por sorgula li baxan , enya te loks û fener

Pozê te yê çilakî , ser daye ser ruyê gewr
Rû wek berfa zinara , siya êvarê bê ser

Dêmên te yê gilover , wekî sêvên xelatê
Di destê xortê kurda , bûn rengê misk û ember

Lêvên te wek hejîrê , çayên Şengal û Hemrîn
Diran sipî wek sedef , dev xûçeya gula zer

Gerden bilid e mîna Birca Belek bi bî nîşan
Li bajarê Cizîrê , paytextê kurd e ew her

Zend wek xiyarê Mêrdîn , sîng deşta Kewkeb û Hol
Cihêd karên xezalan , dil û sing tê de şevder

Herdu biskên te cana , ew Dicle û Firat in
Gerden li dor Cizîrê , kanî ji hewdê kewser

Bi sûnd û soz û peyman , tucar terka te nakim
Tu ya kurda yî bê şik , xwestya xortê dilawer

Çiqas pesnê te bêjî , Tîrêj bi her şev û roj
Xilas nakî tu carî , bi sed xam û bi defter.

------------------------------------------------------------

## AZERÎ ME

Îro ji eşqa dîlberan
Êdî bi yek carî me bes
Gulyên di reş wek ejderan
Ew rewş û dîdarî me bes

Ew zilf û bisk û temberî
Eprî hevirmêşê berî
Ew kofî kêla serserî
Zincîr û ew çarî me bes

Enya sipî boz gewher e
Wek neynika Îskender e
Kelha li Dara raser e
Îdî ji wî marî me bes

Birwên di reş rengê kevan
Awir ji tîrên Şerefxan

Dêmên di sor wek erxewan
Ev qehr û azarî me bes

Rû roj li dinyê xweş hilat
Dev kaniya Dicle û Firat
Ziman ji êmîşê welat
Êdî ji wî zarî me bes

Sing bexçe û baxêd gulan
Cê mirx û teyr û bilbilan
Havîngeha wan dil kulan
Êdî ji wî warî me bes

Bejna bilind Birca Belek
Textê Bedirxan lê serek
Mîna min kuştin wê gelek
Êdî ji ferwarî me bes

Şehzade û mal mezinî
Bi rist û guhar û gerdenî
Ew sebebê jana min î
Êdî evîndarî me bes

Şîret ji bo ehlê dila
Xwe nekne tora çav kila
Nekevin ber êş û kula
Fîxan û ev zarî me bes

Ev gotina pêşyên berê
" Awrek ji çavê dîlberê
Kûrtir ji derba xencerê "
Ev eşq û dildarî me bes

Sipas ji yezdanê mezin
Tore û helbest dane min
Tîrêj im ger pirskî ji min
Ji wê reha Arî me bes
---------------------------------------------

## ABÊ ENGÛR

Erê cana bi wî agrê evînê
Li min sotî seraser ev ten û laş

Bi canbazî di sûka dilfiroşan
Kirî te ji min dil û can tev bi şabaş

Te da destê me piyalek abê engûr
Dema ku min vexwar hiş çû dimam şaş

Te ez avêtime çola evînê
Çi çolek pir ne xweş , tev rêl û berokaş

Li wê çolê dikim hawar û gazî
Belê çibkim neyar û hem ne qardaş

Ji dûr leylan û rewrewkê dibînim
Wekî şîpên di avê bêne ser aş

Bi lez ez tême semtê lê mixabin
Ne av e , vedigerim dîsa beropaş

Te ez berdame rû dinyayê zalim
Bi derwêşî xwedî keşkûl û derbaş

Nekirye qet kesî xeşma te cana
Ne Cengîz û ne Hûlako ne Qerqaş

Bikî rehmê li Tîrêj ey keça rind
Delala ber dila , pir qenc û hem baş .
------------------------------------------------------------------------

# DIL Û CAN MIN FIROT

Min li ser pêta evînê , ciger û dil tev de sot
Can wekî gogê dinalî , ew li ber kaşwêd kevot
Hêstirê xwînê ji çavan , têne xwarê cot bi cot
Nazikê aniye ber çavêm , bi saxî ew melkemot

Bê şik ev jîna ciwanî , tev li min bû êş û jan
Ez zirav îro dirêsim , bûm wekî kalê zeman
Hêz û hîmet çûn nema , îro di dev min yek diran
Min bi destê xwe di xwe kir , qet fêde nake gotegot

Ez ku razîme bi vê xeşm û cefaya dîlberê
Ez ne poşman im bi vê eşq û evîna gewherê
Ez evîndar im ne îro , lê ji heyamê berê
Ku di meydana evînê de , dil û can min firot

Ez di semta xwînşêrînan , bendewar û kole me
Ez di rêza dilgiran , bê şik li xwe pir ewleme
Ez ketim tora şepalan , ku bê heyf û tole me
Ez li wê çola evînê , mame bê kes kal û kût

Nazikê îro bi xeşmê , dame ber çakûç û dar
Rengê pêşmergan di cengê , dane ser pişta neyar
Bes beke vê xeşmê li min , ey çîçeka Xurs û Zinar
Sorgula deşta Rewanê , nêrgiza baxê pirot

Ma gelo dîsa bibînim , ez şepal û nazenîn

Rengê perwanê bikim , dewran li dor mûma geşîn
Dê bila li ser min peya bî , ew ferîştê cansitîn
Wê demê Tîrêj here gorê , bi xwe pêxwas û rût

---------------------------------------------

## JI HINDAMÊ KETIM

Ji bircê derketî cana , wekî rojê ji reş der bû
Bi wê xemlê bi wê xêzê , bi kincê çox û mexmer bû
Bi wê kofya hevirmêşî , wekî tacê li ser ser bû
Çi bêhnek xweş ji bejnê tê , gulav û misk û ember bû

Enî gewher ku sê deq lê , ji rengê neqşeyê Manî
Li jêrê wan du birhin reş , ji xêzê xameya Xanî
Du çavên reşbelek top in , bi dest pêşmergê Berzanî
Bi çavan awirek da min , ku saroxek li min wer bû

Ji ber wê awirê îro , seraser tev kul û jan im
Li wê çola evînê ez , tenê bê hêvî û han im
Li min dinya dibû tarî , kelaxek bê ruh û can im
Ji hindamê ketim bê hiş , li ber çavêm reş û zer bû

Di wê derya evînê de ,ji rengê giştiya ba me
Li ber pêla diçim û têm , ku bê salar û osta me
Dikim gazî tu kes nîne , di wê behrê de wenda me
Çi babîsok li min rabû , mij û moran û bager bû

Çi pir hindik nizanim lê , dema hiş hatî bû ser min

Min çavên xwe vekir tenha , min dî yarê li hember min
Gelek şa bûm min bawer bû , ku Luqman hatî bû ser min
Li ber lingan tewand min ser , ji me'r wek latê Azer bû

Bi wî destê xwe yê nazik , piyalek hingiv û sêvan
Dida dest min bi guft û ken , şekir xwendî bi wan lêvan
Got:Fermo vexwe menoşî qet , nema bû l'min tu êş û jan
Ew ava ku ji dest yarê , bi min wek ava kewser bû

Got:Ey Tîrêj tu xweş dost î , me bê dilya te êdî bes
Di meydana evînê de , wekî te gelkî kêm in kes
Tu bê şik torevan î , wek Hejar û Hacî û Bêkes
Li ser textê evîndaran , bi tac û al û leşker bû

---------------------------------------------------

## BÊ DELAV

Eşq û evîna dîlberan
Tev derd e tev jana zirav

Tîrên ji çavên esmeran
Sotin gelek cerg û hinav

Cerg û hinav sotin gelek
Zehra bi wan çavê belek

Harût û Marût ew melek
Ji rê birin der wext û gav

Çala li Babil çelherîn
Herdu firişt tê de dijîn

Zend in di bin xakê zemîn
Tî , birçiyêd bê nan û av

Ey dilgirê jar û reben
Bawer mebe tu bi guft û ken

Te'j rê nebin ew lêv û çen
Ew zulf û dêm û herdu çav

Ebrû kevan destik sedef
Awir ji tîrên Xanşeref

Tên dil bi nîşan û hedef
Rengê terez bê 'ewr û tav

Bê 'ewr û tav rengê terez
Wêran dikin ew cerg û bez

Herdem ji ber mesta me ez
Deryake kûr min daye nav

Min daye nav deryake kûr
Tev pêl û mewc û bayê gûr

Mûran û mij e bê bihar
Kendal e hawir bê delav

Îro di wê derya evîn
Gazî dikim hana min nîn

Tê min firiştê cansitîn
Emrê me ma ser takî xav

Ser takî xav emrê me ma
Min hêz û himet qet nema

Wek mirxê jarê dev çema
Bazî li hember girtî rav

Yê'j ya xwe ket xortê delal
Nînin ji bo yar û heval

Napirse lê ap û ne xal
Qet kes li wî nake silav

Sermayê eşqê êş û jan
Bendên di Tîrêj xweş bizan

Tev cewher in qîmet giran
Nayên bi dînar û dirav.
-------------------------------------

## HÊT Û MAX

Yê ku ne jar û xeste bî
Kengî dikî nalîn û ax
Tê dil ne wek perwane bî
Nabî evîndarê çirax

Ger ku te dildarek hebit
Meguher ji bil mîna me bit
Herdem li ser ola xwe bit
Poşman nebî der wext û çax

Tu dîlbera xwe'y nazenîn
Meguher bi sed Şêrîn û Zîn
Paşê tu dê bê yar bimîn
Dilgir divê sebr û semax

Yan dil megir , wek me l'xwe mek
Dûr bit ji wan zulfên xelek
Çûne divê semtê gelek
Bê çare ew bûne kelax

Nabînî halêm ey pûser
Yaxma kirim biskên di qer
Wek leşkerê xanê Teter
Êrîş kirin sed koh û şax

Yarê bi kevana li min reşand

Sed tîr di cergê min de çand
Birca dilê min hilweşand
Kavil kirin ew hêt û max

Ey nazikê tu b'kêf û ken
Dema ku bimrim bi ta û ben
Tu li min bigir cawê kefen
Bê tirs li ser laşêm tu rax

Gora ji ax kolan bi seng
Bêra li ser şingîn û deng
Di ber gora tarî û teng
Cana bi destên xwe min dax

Mala me ya dawî ev e
Qeda bi vê dinyê keve
Sal û meh û roj û şev e
Têda tu kes namîne sax

Tîrêj ji bo ehlê dila
Dil kirye ber êş û bela
Bû mesken û warê kula
Derd û xema têk dane şax.

-----------------------------------

## PÊ XWEŞ IM EZ

Cana ji evîna te , bi êş û nexweşim ez
Ger ku te nebînim , timî bê fikr û hiş im ez
Wê pencerê carek veke , reş perdê hilînî
Dil girtiyê dêmên dû gulî çavê reş im ez

Îro di evîna te da , ola xwe me berda
Mizgeft û kinişt pêk ve , ji bo te min bi serda
Va xirqe û bendik min li gerdan xwe vebestin
Wek sofiyê Zerdeşt ku li dergê Laleş im ez

Sawêr û kilîşên te li ber çavêm şev û roj
Nêzîka te bihîşt e û dûra te bi min doj
Umîdam min tu yî îro li dinyayê perîzad
Wek perwane herdem ku li dor mûma geş im ez

Ferhadê evîndar im , belê bo min tu Şêrîn
Rengê Memê diljar im , bi xwe îro tu wek Zîn
Maqnedê Xecê ye tu li Sîpanê Xelatê
Lê rengê Siyamend di şevên reş keleş im ez

Derwêş im li dinyê digerim wek har û dînan
Dermanekî peyda kim ji bo derd û birînan
Pêncî salen ji emrê me hemî beyhûde bûrin
Bûm kalê zemana wa bi gopal dimeşim ez

Sûndê dixum ez dîsa bi wê soz û qerarê

Heta neweşin pelê min rê dûrî ji darê
Qet nabime bê hêvî ji wê geşta te cana
Xeşma te seza ye pa çiqasî pê xweş im ez

Ma soz be li min terka te ez nakim tucarî
Heya ku min bavêjine tirba reş û tarî
Ax û kedera Tîrêj ne bes tu li darê dinya
Heta mirinê dê xem û derdan bikêşim ez.

----------------------------------------------------

# ROHNIYA FINDA

Ew reqs û dîlana evîn
Yê serê govenda me ez
Ew şa'irê dewra zemîn
Xob û şekerxwenda me ez

Xerxal û toq û gerdenî
Ew kember û best û benî
Berbisk û rista ber 'enî
Zêr bazinê zenda me ez

Ew xeml û xêza renge reng
Kebût ji wê pirça pileng
Fîstan ji modêla fireng
Kofya ser rinda me ez

Gewherfiroş û perwer im
Ez pesindarê dîlber im
Şev tariya wek fener im
Rohniya serê finda me ez

Lê ez çi kim ax û eman
Aqlê sivik barê giran
Ez ketme tora esmeran
Jarê guhê gunda me ez

Wê nazikê girt im bi rav

Avêtime paş çayê Qaf
Çolek xirab bê nan û av
Bê hemdem û wenda me ez

Wenda kirim wan dêm duran
Gulyên di reşwek ejderan
Tobe ji evîna esmeran
Pir jar û pergenda me ez

Vîn behreke kûr bê ninî
Rengê şeva reş wek tenî
Parêzke xwe jê ez benî
Beyhûde şermenda me ez

Ez pende bêjim bê dirav
Vîn agir e mavêj xwe nav
Paşê tu dê çi av û av
Şîretkerê xwenda me ez

Manendê Tîrêj ey merî
Tucar bi ter naçî serî
Pir bûm min rîh kir wek hirî
Hêj kole û benda me ez.

----------------------------------------

# ZINCÎRA EVÎNÊ

Karê xwe me kir herdu rojê pêncşem û înê
Bêrya dîlberê kirbû ku em hene civînê

Hayê min ji bayê felekê qet nebû wêga
Ku yara sitemkar wê li min bext wegerînê

Min qet bîr nebir ku dijmina bêbext û zalim
Wê rev girtiyê îro li rê ketye kemînê

Çend tîr wê ji çavên reş belek tenha reşandin
Dil armanc e , sertîr hemî sor bûne ji xwînê

Zû çente bidest biderzî û derman hate ser min
Şûna melhemê bîber reşandî ser birînê

Reswa kirim wek nirxê Hejar bê bend û bê daf
Ez best û girêdame bi zincîra evînê

Nêçîreke jar im ketme nêv panceyê bazî
Bê gazî û han im nîne kes ku min derînê

Min ser bire ber lingan bi dîlî û gedayî
Min gotê bi hêvî bes ke vê azar û kînê

Ya min bikujî êdî bese ya min reha kî
Rehmê bike carek bese fermana'm bixwînê

Bêhna xwe li çend salê min yên mayî dirêj ke
Tîrêj bê guneh e li wî xweş bike jînê.

-----------------------------------------------

## FELEKÊ

Felekê hoy felekê
Çav reşê çav belekê
Por sorê por xelekê
Felekê

Felekê keçka gundê
Xweşikê poz bilindê
Were dakeve govendê
Felekê

Şêrînê sebra dila
Tu bi nazdarî hela
Bihejîn herdu mila
Felekê

Mor û mircan û benî
Goh û toq û gerdenî

Berbisk û rista 'enî
Felekê

Xome xom têkeve nav
Deng bidin bejna zirav
Tu bişo cerg û hinav
Felekê

Xanima koşk û sera
Xort û lawan û kura
Bide ber wan awira
Felekê

Reqs û govena me yar
Bê te xweş nabî tucar
Tu li Tîrêj meke bar
Felekê

Ev xem û êş û keder
Derd û axîn û keser
Tev ji dil ku bêne der
Felekê.

-----------------------------

# GEŞT Û KELEK

Dîsa li min awir kişand , yarê bi wan çavên belek
Birca dilê min hilweşand , ez kirim nêv çexa felek
Çerxê bi fitl û ger û dor , geh birme jêr geh birme jor
Geh ez birim Sîpan û Tor , Cîhan li min kir wek xelek

Xeşma dikî kes nake yar , dil tim bi qîrîn û hawar
Wek leşgerê şahê Tetar , kirne li dor xêz û xelek
Geh piştî ye geh hok e dil , geh îşk e geh badok e dil
Geh bezme ye geh gog e dil , çogan bi dest yar birye şek

Ser sot e geh arişt e dil , geh agirê Zerdeşt e dil
Derya kelek sergeşt e dil , mişt û tijî geşt û kelek
Geh mûm e geh perwan e dil , geh deşt e geh zozan e dil
Gelyê derê Zîlan e dil , geh Qoçegêr geh tendûrek

Geh bibil û şalûr e dil , geh ney e geh tembûr e dil
Geh Dicle geh Xabûr e dil , geh sîper û bazê belek
Ey dilberê dilgawirê , te dame ber wê awirê
Cana dilovanyê bike , xeşmê li Tîrêj xwe mek.

---------------------------------------------------------

# GULA SOR

Cana me dî l'nêk pencerê
Gurzek gul û çîçek bi dest
Min dest dirêj kir hemberê
Bes min gula sor jê bixwest

Ebrû li min wê hilçenî
Awir vedan got :Ezbenî
Ev sorgula baxê min î
Nadim kesî , ey gulperest

Ger te divê ya kesk û şîn
Ya zer û ya jî Yasemîn
Fermo ji xwe'r wana derîn
Da bîn bikî ey jar û mest

Ger te divê rengê kerez
Ya pembe ya xakî gewez
Nakrim ewa ji destê te ez
Bikre li ber sîngê bi best

Ger te divê ya nêrgizî
Qedîf û xemrî qurmizî
Hilî tu bê ax û xwezî
Reşmar bi nêva dil vegest

Ger te divê ya sosinî

Ya gul hinar û ya binî
Yê'j ter nebî malê min î
Êdî bes e ey dil şikest

Ger te divê tûmek nefel
Ya hin ji rêhana du pel
Yan jî kulîlka qurnefel
Bistîn li ber min bes vewest

Ger te divê ya şîrikî
Ji ter di pêsîra xwe kî
Tîrêj tu xweş bawer bikî
Ya sor bi destê te neket .

-----------------------------------------------

# XWEZÎ TIMÎ BIHAR BA

Gulê rabe bihar e , biçin geşt û seyranê
Vîngeha dost û yar e , li çiyayê Kurdistanê

Fistankî taze heftreng , bi xemla zer Mîtanî
Li xwek ji cawê Erjeng ,didrûn bi neqşê Manî

Bi ser zilfan de berde , hibriya hevremêşî
Kofyê li ser girêde , bi gulabend û rêşî

Li hev bipêçne zendan , herin deşta Rewanê
Em herne şehr û gundan , bajarê Mûş û wanê

Ji xwe carek binêrin , li mêrg û dehl û baxan
Mîh û berx tev diçêrin , gul bişkivîn di şaxan

Li rûbar û zinara , sura bayê siba tê
Direqsin gulyê dara , bi govend û sema tê

Dengê quling û qazan , xweş tên li jorê banî
Bilbil didin awazan , xumxum in cok û kanî

Wekî Tîrêj dibêje, xwezî timî bihar ba
Nemana ev kul û xem , umir tim çarde sal ba

-----------------------------------------------------------------------------

# PEZ BÊRÎ KE

Lê nazê lê lê nazê
Lê nazê gerden gazê

Lê nazê bûka xala
Va pez hatye ber mala

Lê nazê bêrîvanê
Meşkê deyne kolanê

Lê nazê lê zeriyê
Zû rabe her bêriyê

Bêrya danê êvarê
Dereng e ro çû xwarê

Lo şivano , pez bêrî ke
Hûr û gir , sed û mî ke

Lê nazê rû wek hîvê
Gerdenê zêr û zîvê

Tu bidoş pezê hilika
Têxe meşk û elbika

Şîr germ bik lê koçerê

Valak dist û mexmerê

Darsêpyê veger xûşkê
Darvek tû vê re meşkê

Navkilê têx lewleba
Tu biklê serê siba

Nivişkê mastê miya
Yê ji sorgul û giya

Jê tê bêhna 'emberê
Li ber Tîrêj ke koçerê

-----------------------------------------------------------------

# KOFÎ HOL KIR

Xort : keçka deşta Silîva
Kember te sade zîv a
Were em herne bihîva

Keç : Lawikê Berwarî bala
Meke va peyvên vala
Me şerme j'dost û hevala

Xort : keçikê ey dost û yarê
Destê xwe bid min êvarê
Da biçin baxê Zinarê

Keç :Lawiko t'qîr û bela ye
Ev ne tevdîr û ne ra ye
Tirsa min j'bav û bira ye

Xort:Keçikê bejin ziravê
Dem xweş e vê weqt û gavê
Tu vê tirsê ji dil bavê

Keç :Tiştê te d'vê bi cî nabî
Ger qiyamet li min rabî
Ev di gerdiş me de nabî

Xort:Keçka sereka jîra
Bib hevala destegîra

Bişkîn va qeyd û zincîra

Keç: Lawiko keçka gunda me
Namûsa bav û bira me
Ev di ola med heram e

Xort:Ramûsankê bid vî canî
Ji dêmên sor erxewanî
Li ser ola Mezdik û Manî

Keç :Şêrîna ber dil û cana
Bidme te sê ramûsana
Ser qehrê gund û cîrana

Xort:Gelkî sipas im ji  yarê
Şakir im wê peyv û zarê
Kofî holkir tev li çarê

Herdu : Tîrêj em anîne cem hev
Gilî gazin kirne ber hev
Me destê tewqayê da hev

---

## DINYA GOG E

Xorto guhbidêre da tu carek
Ger ku der cîhan hebî te yarek
Mespêre wê dil , tu zû bi carek
Te ji rê nebin , guhar û dendûş

Dendûş û guhar û mor û mircan
Sotin pir gelek , dil û gelek can
Ew ava di nêva , herdu lêvan
Jê venexwe da nebî tu serxoş

Ew ava ji dev , dizê du par e
Cam jê tije ye , ew tim li kar e
Yan meyxweş e , ew û yan jî jahr e
Jê fir bike , hindikî tu binoş

Jê tam bike , ka gelo çawa ye
Şêrîn e û yan jî tehl e daye
Ger tehl bî bizan , ji ter seza ye
Jê têr vexwe , wek şeraba meyxoş

Têx bendê li ser tu raxe çerçef
Camê tijeke ji kaniya dev
Meza te be , çav û dêm di mersef
Xweş rûnê li ber û ser bikî doş

Qurtek tu ji cameyê bi dev de

Parîk tu ji mezeyê bi ser de
Da şahî , xeman ji dil bi derde
Ev jîna tu tê , bi tune mefroş

Ev jîna tu tê de , ey birader
Mirna malxerab , bizan li pêşber
Peyvên me ji xwe'r bikî tu rêber
Navêjî bi tune û belatewş

Ew cama tijî wek ava Kewser
Dest pêke vexwe bi navê dîlber
Pesnê yar bidî , tu her ji ezber
Wek Xanî û her wekî Siyapûş

Heta tu bijî di der cîhane
Her lêxe medê tu muhletane
Paşayê mezin , bizan xwedan e
Dinya ye diçî , tê rengê dergûş

Dinya bi xwe gog e , bib tu ser hol
Avê vexwe her ji deya Bîngol
Warê te be , zozanê Herekol
Meya te be , tim ji rezê Kerkûş

Çerxa felekê ji rengê şûr e
Rêça mirinê dibin dibûre
Em tev li ser in ji me'v ne dûr e
Tîrêj bi te rêçenas bidêr goş

-----------------------------------------------------------------------------

## JÎNA CIWANÎ

Tu guhdêre li xêza , birader xem cefa ye
Bi vê dinya nehêja , ku her dawî fena ye

Dinya ji rengê hespa , kesa tu lê siwar e
Çiqa siwar bimîne , dawî her tu peya ye

Felek pir xapînok e , erd kirye bo te meydan
Jîna te rengê gog e , li ber hol û kaşiwa ye

Felek bi ter neyar e , bizane ey birader
Cîhan ji rengê bahr e , pêl ji şev û roja ye

Jîna te ya wek kelek , di wê derya bê binî
Pêl lê didin û ser şeg , her ji sal û meha ye

Şev û roj û meh û sal , yek te dispêrî yê dî
Geh tu d'kevî dev newal , geh li jorê bala ye

Geh teng e geh firahî , geh şah e geh dil bi xem
Geh reş e geh ronayî, geh mîr e geh geda ye

Ev hemîş e yeka yek , ji jîna te diçin tev

Li ber çavên te her wek , sawêra sînema ye

Jîna te ya ciwanî , bi koçmal bar dikî
Li te dike xuyanî , qelewizê kala ye

Ka hiner û hêza te , ka dînaya te y'dirist
Ka ew xeml û xêza te , tev çû badî hewa ye

Tu ketî warê jana , nexweşî û lerz û ta
Navê koka dirana , di devê te'd nema ye

Destê te j'tar û tûran , hate birrîn bi carek
Mirnê xefkek neh diran , li ber te xweş veda ye

Lê nizanî çi gavê , bi te'd biteqî ew xefk
Têkevî bend û dahvê , can ji ten bit cuda ye

Qenc be digel hemî kes , dilê kesî mehêl e
Berî xelk bên filankes , şabû bi rehma xweda ye

Ne taybetî ji bo te , vî tiştî ez dibêjim
Ji bo min û te û her kes , li pêşya me teva ye

Tu van bendan birader , timî bixwîne herdem
Ne bê ol im te bawer , Tîrêj ne dil reva ye

------------------------------------------------------

# EMRÊ ÇÛYÎ

Feryad û sed ax û eman
Ez ketme ber êş û bela
Heyfa evî emrê ciwan
Min daye ber derd û kula

Derdan di dil min dane şax
Bihar li min bû wek tebax
Mêrga dil û can çilmisî
Hişkbûne hewdê sorgula

Hişk bûn li dil mêrg û çîman
Teyr û tilûr qet tê nema
Îro ji wî baxî bilî
Awaz û dengê bilbila

Şalûr û bilbil mirxê baz
Qumrî , quling , şahîn û qaz
Tev jê firîn derketne der
Ma warê bûm û qertela

Tîrêj bese qîr û hewar
Emrê çûyî lê nabe çar
Kêf û xweşî îro li dil
Bêne wekî salêd xela
----------------------------------

# ÇEND RISTÊN ÇANDÎ Û ÇÎROKÎ

## ÇAR DEM

Ey Mizgîno bixwîne
Va rêçikên li jorî

Bo tu nezan nemînî
Biçûko dê bi gorî

Hemî sal sêsed û şêst
Digel şeş roj bi hejmar

Şev ji rojan tên hesab
Bi se'etan bîst û çar

Ji heft roja ya heştan
Di navbêra wan în e

Sal dibitin donzde meh

Rojê wan sîh yek û sî

Pêşî kanûna paşîn
Sibat û Adar li dû

Nîsan Gulan Hezîran
Tîrmeh û Tebax li dû

Ya nehemîn Îlon e
Çiya pêşîn deh e

Yaze Çirya paşîn
Kanûn li pê dozdeh e

Sal hatiye parkirin
Çar dem jê hatine der

Her navbera sê mehan
Jê'r heye wextek û ger

Biharê qad heşîn e
Havînê dinya germ e

Payizê pelweşîn e
Zivistan sar û serma
-------------------------------

# MEMO RABE

Memo zûka rabe
Sibe ye roj va hilat

Xew ji te ra nabe
Dem û dewra dersê hat

Rabe , rabe , rabe
De rabe lo xewaro

Divê em bixwînin
Bi zarê xwe kurmancî

Doza xwe pêk bînin
Tevda bighên armancê

Rabe , rabe , rabe
De rabe lo xewaro

Welatê me xweş e
Dibêjinê Kurdistan

Lezke zû bimeşe
Da em biçin dibistan

Rabe , rabe , rabe
De rabe lo xewaro

Bê xwendin û zanîn
Nabî tu kar û xebat

Bê şer û bê ceng û xwîn
Nabî azad ev welat

Rabe , rabe , rabe
De rabe lo xewaro
----------------------------------

# EM BIRA NE

Em bira ne xortê kurd in
Tev dixwînin yek ziman

Em tev mêr in tev jî merd in
Daxwaza me Kurdistan

Bijî bijî dibistan
Bijî bijî dibistan

Dibistana me bilind e
Tê de heye sê dere

Cê wê roavayê gund e
Bi kulek û pencere

Bijî bijî dibistan
Bijî bijî dibistan

Her navbera du dersan
Deh deqan lîskebazî

Ne hêvî ye ji Yezdan
Her sal bi serfirazî

Bijî bijî dibistan
Bijî bijî dibistan

Rûsipîtî em herin
Cem bira û bavên xwe

Bi şermîsarî nerin
Dilşikestî malên xwe

Bijî bijî dibistan
Bijî bijî dibistan
----------------------------------

# CENGA DU DÎKAN

Dîkê gewr û bê nîşan
Pir mêrxas û qehreman

Ew dîkê şeng û bedew
Li ser pîna xwe bû ew

Pîne milk û malê wî
Cihê bav û kalê wî

Bi mirdiyaq û pûş û ax
Deh rêz kerpîç û yek max

Li cem dîkê dîlawer
Hêja bû textê Qeyser

Dibê hebû li taxê
Dîkekî mala axê

Yekî reşî çel kumik
Bê tor e û wek cirik

Geraze û bi nav û deng
Êrîş bire dîkê şeng

Dîkê gewrî gerden rût
Niklê xwe wî li hev sût

Ku ew dîkê b'hing û deng
Çav di serî bû pereng

Bi mêranî wek ejder
Ji jor xwe avête ser

Wek mêran bê tirs û rev
Bi nikilan hatin hev

Dizîvirîn li çar dor
Kumik li hev kirin sor

Ketin ber pêx û hembêz
Perî ji wan bûne rêz

Dîkê gewrî hiner baz
Paşê dibû serfiraz

Zora dîkê axê bir
Laşê wî tev nikil kir

Pê ve ne hişt pûrt û per
Ji ber pîna xwe kir der

Polî poşman vegerî
Lê mixabin bê terî

Çavsorî kotek û zor
Jê ra nema dem û dor

Pir dijwar e çerxa dem

Xwe mede ber ey tu hemdem

Binêr çi hat serê dîk
Ne terî ma ne perîk

Ku ew dîkê çel kumik
Bû tayê dîkê şinik

Guh bide xêzên Tîrêj
Di ser guhên xwe'r mavêj

-------------------------------------

# KALO Û KERÊ XWE

Esrê êvara înê , kincê xwe min lixwekir
Ji bajêr derketim der , qesta gerê min dikir

Hêdî hêdî dimeşyam , kalek rastî min dihat
Lê zû kerê xwe dajot , kalo xwe j'min diparast

Min jêre got:Raweste ,rawestî û dinerî
Min rê girt û çûme cem , ku çav bi hêstir û girî

Dema gihîştibûm cem , rojbixêrek min lê da
Min got:Kalo metirse , ma çima rê te berda

Kela girî ket qirikê , nema devê wî gerî
Hêstir li rû bûne rêz , deng ji kalo hat birrî

Hinek li rû dikenyan , dilê wî min xweş dikir
Bêhna wî hate ber wî , pirsiyarek min jê kir

Min got:Kalo ji ku tê , niha û tê herî ku
Got:Kurê min guh medê , dikim herim li min zû

Got:Min barekî êzing , îro anîbû bajêr
Bi vê pişta xwe yî xûz , li vî kerê xwe yê nêr

Min bar dabû bi sê pela , bi dilekî xweş û geş
Da hin xwarin bikirim , ji bo kurê xwe'y nexweş

Mîrecî hate cem min , got:Bide heqê weznê
Ewî pelek ji min stand , ma bû du pel bi tenê

Paşê yekî dî dihat , çente di bin milê wî
Got:Bide min îstîhlak , yek jî ji wan min da wî

Di pey gumrikçî dihat , wî jî pelek ji min xwest
Pelê dawî min dayê , bi diljarî min da dest

Li xanê bû kerê min , ez hatibûm kerê xwe
Xancî jî hate cem min , wî jî dixwest heqê xwe

Kurtanê ker min jê kir , min danî cem wî rehîn
Polî poşman vegeryam , tu va halê min dibîn

Serpêhatya min ev e , tu ka navê xwe bibêj
Min keserek vedida , min got : navê min Tîrêj .

---------------------------------------------------------------------------------------

# ÇAR DEMÊN  SALÊ

Keyo rabe binêre , dinya îro bihar e
Guhê xwe tu bidêre , barîna berx û kar e

Qadê kirasekî şîn , wergirtiye bejna xwe
Kulîlk bi sed reng û bîn , li ser qadê siwar e

Mirxe bi kewt û ref tên , ji zozana ber bi xwar
Silav dikin li deştê , bi perwaz û bi par e

Sazbendê wane bilbil , bi dengê xwe dinale
Derman dikî dilê kul , biharê xweş bihar e

Tê de dibuhirînin , hersên mehê biharê
Paşê yekî dişînin , bê ma zozan hê sar e

Şandik ji bo texmînê , diçin zozên çi zû tê
Li wan dikî mizgîn , li zozana bihar e

Ji deştê tev bi xatir , diçin war û cihê xwe
Berê xwe didne bakûr , bi lez û bez û xar e

Hinga berateyê gewr , dikevite rû erdê
Hê nû bihar dibe stewr , ceh û genim li dar e

Bihar bi rengê heşîn ,  xatir ji me dixwaze
Li pey wî tête havîn , bi xûr û bêr û kar e

Havî bi xwe sê meh in , payiz di bergê da ye
Roj bi roj û hin bi hin , ba hênik û geh sar e

Meriv vêga dizanî , havîn bi germa xwe çû
Payiz dike xuyanî , ewr li bala diyar e

Cîhan dibe wek leylan , ji rewrewk û dûmanê
Bi wî bayê xwe peland , diweşîne ji darê

Payiz digel sê mehan , ew jî diçe dibhure
Paşê dibe zivistan , zivistan pir dijwar e

Rojê du-sê-çar carî , teyrok û berf û baran
Ji wan ewrên di tarî , li ser me xweş dibare

Şer û cenga zivistan , ew jî bi xwe sê meh in
Di pey wan her sê mehan , dem û benga Adar e

Adar mehek ji her sê , mehên bihara rengîn
Gelî xwenda vê dersê , ji ezber kin bi kar e

Her dem ji bo we Tîrêj , dikî kar û xebatê
Ji bo we bûye dengbêj , bi gazî û hewar e

-----------------------------------------------------

## PAŞA Û HER SÊ LAWÊN XWE

Dibê care hebû , yek mîr û paşa
Xwedî êl û eşîr , û hem jî leşker

Xwedî tac û sera , û şehneşîn bû
Xwedî zêr û dirav û mal û gewher

Ewî sê ku hebûn , lê yek ji wana
Ne gelkî ber bi çav bû , ew dîlawer

Belê herdu kurên din , ber bi çav bûn
Gelek naz û çeleng bûn , hem jî dîder

Bi yê kêm wan dikir , her dem tinazî
Ji destê wan nema , wî xwe dikir der

Ji nişka ve , dibê paşakî dijwar
Dihat ser wan , digel sîpah û leşker

Wî paşayî şer û qewxe , ji wan xwest
Di wê rojê di nav wan de , dibû şer

Dibû qurpînê şeşderban , li hawêr
Xuşîn ket darê darrima , li her der

Belê heyf û mixabin , ew kurêd naz
Ji meydanê revîn , bê ceng û bê şer

Kurê ku kêm qelafet bû , weke şêr
Li meydanê bi dest wî şûr û xencer

Bi mêrxasî dikir , qêrîn li dijmin
Bi gernasî , ji erdê xwe kirin der

Lê paşê hate nêk bavê xwe , ew mêr
Wisa wî gote:Ev gotar ji ezber

Ne ew kes im ji meydanê bibazim
Ku dijmin bidne pey min ew bi şeşber

Ez ew kes im , li meydanê bigazim
Bi mêrxasî digel dijmin bikim şer

Ji ber ku kêm qelafet , û ez kin im
Bihakêm im li nêk bav û birader

Biçûkê kohê dinya , çayê Cûdî
Li nêk Yezdan ji hemyan ew buhatir

Deve jî wa çi girs e , lê mixabin
Şev û rojan tu lê siware wek ker

Li mervê kêm qelafet mek tinazî
Tu lê carek temaşake , dema şer

Qelewlaşan didî ber xwe bi dîlî
Wekî şêr û piling û mar û ejder

Di pê gotar xelas kir , daketî xwar

Sipas kir bavê xwe , û ma li hember

Ji nû ve bav helestî , rabû ser xwe
Pîrozî kir kurê xwe , pêşî leşker

Nîşanek daye wîna , yadîgarî
Kirî serdar li ser sîpah seraser

Li we tembî gelî xortê dilovan
Tinazyê xwe mekin yekcar li her mêr

Bizanin ku mêranî ne b'qelafet
Wekî Tîrêj dibêje ey dîlawer

---------------------------------------------

# PEND Û ŞÎRET

Li ber bayê di zana guh bidêre
Ku cêza te bibî tev dir û gewher

Li ber bayê nezanan qet medêre
Wê cêza te bibe wirdê êmê ker

Temaşe ke li tawis ey birader
Binere ew çiqa bi neqş û nîgar e

Ji rûtbûna di lingên xwe ew her
Ji ber xwe pir fehêt û şermîsar e

Birayê min tu berya gotina xwe
Xweşxweş bibîne û paşê bibêje

Bila tirş be hevîrê gotina te
Bi şikevayî li ser sêlê nepêje

Cihê kêmasiya xwe têd bibînî
Tu jê bar ke here cihkî dinî dûr

Eger karî bi merdî dest hilînî
Bi mêrxasî bimir tu l'bin siya şûr

Tiştê ku can pê nerm dibî
Paldan e yan razan û xew

Lê yê ku merva pûç dikî
Bê şik bizan fort û derew

Dema ku baran tête xwar
Lib hûr e şil nake cihî

Li ku giha hev bû yeker
Jê çêdibî pêl û lehî

Meriv du tişt in , ne zêde
Yek ziman yê duda dil e

Tiştê ku mayî guh medê
Ew hestî û xwîna şil e

Hemû dar bi avê têne avdan
Ji bil dara jiyanê ew birader

Eger ne b'xwîna sor ya xort û lawan
Tucar nabişkeve , qet nagire ber

Di kêmasiya dinyê de qet nepojin
Di dil de tev dibe derd û qirêj e

Kesê xemgîn li milk û malê dinya
Serê wî her di teqreqê de gêj e

Xebatê di ber kufletê xwe'd bike
Eger roja te pêk ve bes bi yek nan

Sezatir e tu destê xwe bibeste

Bi koletî li hember mîr û sultan

-----------------------------------------

## EY KURÊ MIN

Tu guhdêre çi bêjim , kurê min ey tu Dara
Cewher ji ter birêjim , ji bîr meke tucara

Çax û dem ey kurê baş , karwan e tim li rê ye
Eger tu jê ma li paş , tê bimînî li wara

Jê yêd nezan tu dûr be , kambax û mal wêran in
Bi zana ra mijûl be , ji wan pir bik tu yara

Civîna mervê zana , tev hiş û hîn û zanîn
Lê civata nezana  , wek axurê dewara

Meke bawer kurê min , ji gelaca çi gotin
Tu bawer be li nêk min , weha gotin du cara

Dilxweş ke yê dil bi xem , dilê kesî mehêle
Dilovan be tu her dem , digel xizan û jara

Bi gotin û peyvên xweş , tu dikarî bi derxe
Ji wan cihê teng û reş , tûpişk û kore mara

Bike xebat bo welat , wekî bavê xwe Tîrêj
Bike çiqa ji te hat , nemîn ji pişk û para

-----------------------------------------------------

**www.tirej.info**

**Rêzkirina tîpan:**

**-Mişel Osman(bavê Nisrîn)**

**-Ibrahîm Ebdî(bavê Şêrîn)**